

له قوتابخانەکانی کوردستان
**ئیسماعیل بێشکچی هەر له زیندانه**
4 ◀



لەبەر ئەوەی پیاوەکانیان بێدەنگن
**ژنان کێشه بۆ خەڵک دەنێنەوه**
16 ◀

بەرهەم عەلی و
**چیرۆکی دەزگیرانه تەزویرچییەکەی**
11 ◀




# Rûdaw
ÇAPA EWRÛPA







Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

Hejmar/Nr. 23 | 8. Kanûn/November 2009 | www.rudaw.net


**KURDISTANÎ ▶ 2-5**
- Helebçe vê carê bi trajediya Elî giriya
- "Her aliyek min bi hevkariya bi aliyê din re tawanbar dike"
- Melayên Sunî yên kurd dibin Şîa

**ÇAND Û HUNER ▶ 8**
- Mehmet Atlı: Dengê mûzîka bajarî û tenêtiyê!

**JIN Û CIVAK ▶ 9**
- Çopî ji kaktûsan hezdike!




*(Wêne: Rûdaw)*


**DÎASPORA ▶ 10-11**
- "Dêrsimî çawa dikarin jenosîdê ji bîr bikin?"

**EWRÛPA ▶ 12**
- Polîsên alman avêtin ser Milli Görüşê

**CÎHAN ▶ 13**
- AIDS Afrîkaya Başûr vala dike: Rojê 1000 mirî

**ZAZAKÎ ▶ 14**
- Êdî ma bi kirmanckî (zazakî) fîlman temaşe kenê

**KESKESOR ▶ 16**
- Jinên Îraqê dibin koleyên seksê

**HEVPEYVÎN ▶ 15**


Sekreterê Rêxistina Rojnamevanên Sînornenas Julliard:
## Divê Tirkiye, kurdî wek zimanek fermî bipejirîne



*Jean-Francois Julliard*

Zindana nû ya Öcalan Kurdistanê vegerand rojên kevn
# Careke din bi xatirê aşîtiyê?



*Kolanên Kurdistanê careke din bûn qada şer û pevçûnan* — *Wêne: DIHA*

**Amed/Köln/Stenbol (Rûdaw)** – Piştî guherina zindana Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan, bûyerên ku li seranserê Kurdistan, Tirkiye û Ewrûpayê destpêkirin her diçe firehtir dibe. Di xwepişandan û protestoyên hefta borî de ku li ser banga rayedarên PKK'ê pêk hatin de ciwaneki kurd ji aliyê polis ve hat kuştin, bi dehan kes di encama êrişa polisan de brîndar bûn û heta niha nêzikî 3 sed kes ji hatin girtin. Şer û pevçûnên li gelek bajarên Kurdistanê didomin. Di vê navberê de girtina dikanan, çalakiyên protestoyî, meş, pevçûn, li zindanan rojiyên birçîbûnê, daxuyaniyên çapemeniyê û gelek cûre çalakiyên din ji her diçe berfirehtir dibin. Kurdên li dervayê welat jî li gelek navendên mezin tevlî protestoya bûn.

Öcalan, zindana xwe ya nû wek "çala mirinê" binavkiribû û gotibû "dixwazin min hêdî hêdî bukujin." Piştî daxuyaniyên Öcalan PKK'ê bang li kurdan kir ku dakevin kolanan û bûyerên dawin destpêkirin. Parêzerê Öcalan, Ömer Güneş ji Rûdawê re daxuyand ku Öcalan ji hemû mafan bêpar e û hucre ya nû ji ya kevin xerabtir e.

Li ser daxuyaniyên Öcalan heyeteki DTP ku ji 4 mebûsan pêk dihat, serdana cigirê serokwezir Bülent Arınç kirin. Piştî vê hevditinê û daxuyaniyên Abdullah Öcalan, Wezîrê Dadê Sadullah Ergin heyeteki şand İmralıyê û weneyên hucreya Öcalan weşandin. Rayedarên Hikûmeta AKP'ê daxuyaniyên Öcalan yên di derbarê rewşa hucreya wî de wek 'mubalaxa' binavdikin. Wezîrê Dadê Ergin daxuyand ku guhertina zindana Öcalan ne mijara gotinê ye.

Şaredarên DTP'yî jî ku rewşa zindana Öcalan protesto kirin, bang li Deniz Baykal û Devlet Bahçeli kirin ku ji bo fahmkirina rewşa Öcalan 11 roj li zindana İmralıyê biminin.

Parêzerê Öcalan, Ömer Güneş ku ji Rûdawê re axifî û bal kişand ser niqaşên derbarê meziniya hucreya Öcalan û got ku 'pirsgirêk ne santimetreqare û metrekare ye.'

Li aliyê din di nav heman gengeşiyê de raportorê Dadgeha Destûrê ya Tirkiyeyê doza girtina DTP'ê anî rojevê û di raporta xwe de daxwaza girtinê DTP'ê kir. Mebûsên DTP'ê li ser vê yekê daxuyandin ku partiya wan bê girtin wê ji meclisê istifa bikin. Hevseroka DTP'ê Emine Ayna ji Rûdawê re daxuyand ku ger DTP bê girtin ji bili istifakirina ji meclisê rêyeke din li ber wan namîne. Parlamenê Şirnexê Hasip Kaplan jî ji Rûdawê re daxuyand ku êrişên li dijî DTP'ê ji kolanan boriye û derbasî korîdorên dadgehan bûye.

▶ 6

TRT-Türk:
## Kurdan Le Monde dîplomatique jî kirin kurdî



Televizyona fermî ya dewleta tirk, TRT-Türk raporekê di derbarê projeyên çapemeniya Başûrê Kurdistanê de belavkir. Di raportê de tê gotin ku kurdan di warê çapemeniyê de pêşketinek mezin bi dest anine. TRT-Türk balê kişand ku kurdan cara yekem rojnameyeke navûdeng wek Le Mond diplomatique ya bi zaraveyên kurmancî û soranî li Hewlêr û paytextên Ewrûpa diweşînin.

## Kujerên Dindar hatin girtin

Karmendê kurd Mehmet Selim Dindar ku hefta borî li Stenbolê hatibû kuştin, li heman bajarî hat veşartin û kûjerên wî ji roja şemiyê hatin girtin. Lêbelê bûyer hîn jî zelal nebûye. Birayê wî Dr. Emin Dindar helwesta çapemeniya tirk rexne dike û dibêje "herdu kujer nijadperst û dijminên kurdan in." Medya tirk kuştina Dindar wek 'bûyereke adlî' binav dike.

M. Selim Dindarê ku yek ji girtî û şahidê zilma zindana Amedê yên salên 1980'yan bû, hefta borî, di encama êrişeke li ber Komeleya Ciziriyan a Stenbolê jiyana xwe ji dest dabû. Di bûyerê de 7 kurdên din ji birîndar bûbûn. Dindar di raya giştî de wek bêjerê işkenceyên zindana Amedê dihat naskirin û ew yek ji serkêşên kampanya 'bila zindana Amedê bibe abide' dikir. ▶ 4

## Ji bo kuştina kurdan çete damezrandine

Li Almanyayê ji bo kuştina siyasetmedar û şelandina dewlemendên kurd, pênc nijadperestên tirk ku bi navê "Rexistina Têkoşerên Netewi ya Ewrûpayê" çeteyeki li Kölnê ava kirin û hatin girtin. ▶ 12



Elî û dayika xwe piştî 21 salan digihîn hev. (Wêne: Rûdaw)

## Roja komkujiyê winda bû, piştî 21 salan li dayika xwe vegeriya

# Helebçe vê carê bi trajediya Elî giriya

*Pêşketinên teknîkî wek DNA'yê, li Herêma Kurdistanê malbateke perçekirî gihand hev. Zarokê ku di dema komkujiya Helebçê de winda bûbû û jineke ji Xoresana Îranê wî xwedî kiribû, piştî 21 salan bi encamên DNA dayika xwe ya rast dît. Dayîk û kur li Helebçê gihan hevdu.*



Dayika Elî Fatime Heme. (Wêne: Rûdaw)

**NEWZAD MİHEMED & KAWA ŞÊX**

**Helebçe (Rûdaw)** - Encamên lêkolîna bijîjkî ya (DNA) ku ji bo jin û zarokên Helebçeyî yên winda hatibû kirin, hat ragihandin. Bi ragihandina encamê jineke ku di nava kesên li wir amade de rabû ser xwe û piştî spasikirinê ji hişê xwe çû. Ew jin beriya 21 salan di bin gurmijîn û nalîna firokeyên kîmyabarana rejîma Saddam de kurê xwe winda kiribû. Girîn û hewara Fatime Heme bi dîtina zarokên xwe yê winda keyfxweş bû. Elî yê 21 salî gihîşt dayika xwe.

**3 rojan bi tilî mijandinê jiyaye**

Kubra Hemîd Pur di sala 1986'an de li Xoresana Îranê biryar dide ku di rêzên hêza Bingehîn a Îranî de xizmetê bike. Birayê wê Îsfendyar Hemîd Purê 60 salî ji Îranê ji bo tevilbûna şahiya şadbûna Elî ya li gel dayika wî hatiye. Îsfendyar wiha dibêje: "Piştî kîmyabaranê dema xwişka min Kubra li gel hêzên bingehîn tê Helebçe, Elî dibîne û wî ligel xwe dibe."

Sê roj piştî kîmyabarana Helebçe, dengê zarokekê di nava pêçekê de tê guhê Kubra: "Dema xwişka min serê pêçekê radike, zarokek 40 rojî dibîne ku tiliyên dimijine. Mayîn û rizgarbûna Elî wekî mûcîzeyekê ye. Ji ber ku ew wê demê sê rojan di malek vala de tenê tiliyên destê xwe mijandiye."

Elî piştî dîtina dayika xwe fêr bû ku navê wê Zimnako bû. Elî wan tiştan nizane, lê tû carî dayika ku ew xwedikirî (Kubra Hemîd Pur) ji bîra wî naçe: "Ji zarokên xwe zêdetir ji min hezdikir. Wê min da xwendin, gelek giringî dida min û timî cilên nû li min dikir."

Ev 3 sal in ku Kubra jiyana xwe ji dest daye û Elî piştî wê yekê dikeve ser vegera Helebçe. Îsfendyar didome: "Xwişka min Kubra ji me re got ku wê ew wekî zarokên xwe perwerde kir, jêre dû nav hilbijart û ew jî Elî û Wehîd bûn. Lê piştre Elî pejirand."

**Elî, komkujiya Helebçê ji psîkologekî dibihîsê**

Fatime Hemîd Pur 58 salî ye û xwişka Kubra ye. Taqeta wê pirsê nebû ku wê êdî Elî bibînin, ew şert û merc li ser danîn ku bi berdewamî serdana wan bike. Fatime dibêje: "Xwişka min Kubra ji despêkê ve hewl dida ku tu car Elî çîroka xwe ya rast nizanibe, da ku pê neêş e. Lê rojekê ez bi xwe çûm gel psîkolog. Şîreta psîkolog ev bû; piştî 6 saliya wî rastiyê ji Elî re bêjin. Li ser vê pêşniyara wî min rastî ji Elî re got, eger ne li ser wê pêşniyarê bûya, niha wê Elî nehata Helebçê."

Xaleta Elî ya Îranî dibêje ku piştî bihîstina rastiyan, Elî ji malbata wan sar nebû: "Ji ber xwişka min Kubra ewqas ji wî heskiribû, nedikarî sar bibe." Îsfendyar Hemîd gelek ji zarokatî û exlaqê Elî raziye û her pesnê wî dide: "Gelek li ser xwe, tena û guhdar bû. Dibe ku her vê yekê wisan li xwişka min Kubra kiribe ku ew qas pêve girêdayî be, dixwend û gelek jêhatî bû. Dema ku Elî zanî ew ji Helebçeye û çîroka rizgarbûna xwe bihîst, gûhertin bi ser jiyana wî de hat." Elî gotinên Îsfendyar misoger dike û wiha dibêje: "Ji bo ku hest bi êş û tenêtiyê nekim, min zû rihet dikirin, geşt û seyranên malbatî çêdikirin û ez digerandim."

**Dema nediyarbûnê**

Piştî mirina Kubra Hemîd, êdî neçar dibe li pey Helebçe, dayik û bavê xwe yê rast bigere. Ew wiha didome: "Hertim xewna min bû ku hewarek peyda bibe ku di wê derbarê de agahiyan bide min. Timî ev di serê min de bû ez dayik û bavê xwe bibînim."

Dr. Şehriyar Xatrî çalakvanê mafê qûrbaniyên çekên kîmyayî ye û niha li Hollanda dijî: "Min têkilî li gel Dr. Şehriyare çêkir, wê ji min re got 'ezê di demekî kirt de te bigihênim Helebçe.' Dr. Şeyriyar têkilî bi Komela qûrbaniyên Helebçe û Wezîra Karûbarê Şehîdan Dr. Çînar Sed Ebdûllah re datîne. Dema ku Çînar diçe Tehranê, Elî diçe gel û bi wê awayî pêngava ji bo Helebçe destpêdike. Piştre nûçeya dîtina Elî, Helebçe radike ser piyan; "Ji wê roja ku hatim, ez li benda encama lêkolîna bijîjk a ji bo dîtina dayika xwe bûm. Timî dilê min bi heyecan lêdida."

Îsfenyar Hemîd Pur domand: "Herçendî ji malbata me re giran be jî, lê em niha kêfxweş in ku Elî li gel dayika xwe ye." Fatime Hemîd berî navê dayika Elî diyarbikin bi 5 deqîqeyan li ber gûhê Elî rawestiya û li ber xêzanên li bendê sekinîn de got: "Me Elî perwerde kir û gihand vê rojê, hêvîdar in ku çavê we jî li ser Elî be." Û wê dest bi girî kir.

**Elî di nava rûniştinek bi girî de**

Roja 3'ê Kanûnê, xala sifir ya despêkirina ji bo Elî, seat di 12:00'an de li salona Monûmênta Helebçê û li pêşiya çend malbatan ku 21 sale zarokên wan windabûne... Her yekê destê xwe bilind kir ku Elî kurê wê be. Ji bo cara yekem navê dayika xwe ya rast bihîst. Ew dayik seatek berî kîmyabaranê, roja 16'ê Adarê 1988'an li gel wî bû û ew di nava pêçekê de kiribû xwewê.

Rêveberiya pêşwazîkirina li Elî, çend caran daxwaz ji xêzanan kir ku li gel eşkerekirina navê dayika Elî, aram bin. Dema ku navê dayika wî, Fatime Heme Salih Mehmût hat gotin, Fatime li ser hişê xwe çû û Elî ji bo bermilkirina dayika xwe ya ji hiş çûyî rakir û got: "Ez kêfxweş im ku kurd im." Lehiya maç û girî salonê dagirt û piştî ku dayik biserxwe ve hat Elî hemêz kir û got: "Zimnako te çavên min ronî kirin, kurê min, tu Zimnako yî, kurê min."

Pismamê Elî, Salar Xalid bi çavên şil û dengê girî wiha û got: "Elî yekane zarokê ji malbatê ji mirinê rizgar bûye, ji ber ku 4 bira, xwişkek û bavê wan di komkujiyê de şehîd bûn, niha tenê ew û dayika xwe sax mane."



Elî li gel malbata xwe ya Îranî ku wî xwedî kirine. (Wêne: Rûdaw)

## Hilbijartinên li Musilê:

# Çar lîsteyên kurdan, yeka ereban

**Hewlêr (Rûdaw)** – Kurd li Musilê bi çar lîsteyan tevî hilbijartinan dibin û ereb jî di bin navê Lîsta Hedba de amadekariya hilbijartinê dikin. Berpirsê Melbendê YNK`ê li Musilê Herêm Kemal Axa dibêje ku pir lîstî wê ziyanê bigihîne kurdan. Lîsta Goran jî biryar daye ku bi serê xwe tevlî hilbijartinan bibe.

Li gor axaftinên Berpirsê Melbendê YNK`ê, Lîsta Hedba li Musilê lîsta herî bi hêz a Ereban e, lê belê kurd bi çar lîsteyên wek Hevpeymaniya Kurdistanî, Goran, Yekgirtû ya Îslamî û Komele ya Îslamî beşdarê hilbijartinên Musilê dibin.

Lîsta Goran biryara xwe ya dawî daye ku li tu parêzgeha Iraqê dema tevî hilbijartinan dibe, li gel Lîsta Kurdistanî hevpeymaniyê neke. Endamê Polîtburoya Yekgirtû ya Îslamî Selaheddîn Babekir jî di daxwiyaniyekê bo Rûdawê de ragihand: "Li heft parêzgehên Iraqê, di nav de Musil, lîsteya me ya serbixwe heye. Me biryara xwe daye wek Lîsteya Yekgirtû ya Îslamî tevî hilbijartinan bibin."

Berdevkê Komele ya Îslamî Evdilsetar Mecîd dide zanîn ku Komele li Musilê xwediyê hêzeke mezin e: "Li Musilê jî wek li Hewlêr û Silêmaniyê Komele bi lîsteke serbixwe wê tevlî hilbijartinan bibe."

Bi baweriya Berpirsê Melbendê YNK`ê li Musilê Herêm Kemal Axa kurd eger bi gelek lîsteyan tevlî hilbijartinan bibin wê zerereke mezin bide wan: "Diviya bû li Musilê kurd di bin hêzeke yekgirtî de biciviyana. Lîsta Hedba dijberê me ye û bi hêz e, lewre beşdariya ereban bi yek lîsteyê û ya kurdan bi çaran li Musilê zererê digihîne kurdan. Kurd li beramber sê lîstên bi hêz ên wek Dewleta Yasa û hevpeymaniya Şîa û Sunneyan e. Pir lîstiya kurdan bibe sedem ku kurd jimareke zêde ya postên giring winda bikin."

**Lîsta Hedba şantaj dike**

Lîsta Hedba ragihand ku eger jimara kursiyên parêzgeha Musilê wek ya berê ya Tariq Haşimî nebe, wê rê nede ku li Musil hilbijartin bên kirin; lê Berpirsê Melbendê YNK`ê li Musil tekez dike ku Lîsta Hedba nikare hilbijartinan qedexe bike.

Li gor serjimêriyên Wezareta Bazirganî, ji bo parêzgeha Musilê 12 kursî hatine zêdekirin, lê piştî veto yê Haşimî biryara zêdekirina her 12 kursiyan hat hilweşandin.

Li gor Berpirsê Melbendê YNK`ê li Musil Herêma Kemal Axa, tehdîtên Lîsta Hedba bê naverok in: "Hedba dikare ji aliyê xwe hilbijartinan boyqot bike û dibe ku bikare li beşekî melbendê parêzgeha Musilê de nehêle hilbijartin bên lidarxistin, lê belê li tevahiya parêzgehê û qeza û nehiyeyên wê nikare hilbijartinan qedexe bike lewma ziyaneke mezin digihîne xwe."



*Seyid Îsa dibêje ku dîroka kurd û Şiayan wek hev e, jiber ku herdu jî hertim di bin destan de mane.* (Wêne: Rûdaw)

# Melayên Sunî yên kurd dibin Şîa

**SELAM SADÎ & NEWZAD MEHMÛD**

**Hewlêr / Silêmanî (Rûdaw)** - Beriya 23 salan, mela Seyid Îsa Reşîd Berzinci di mala xwe de guhertina mezheba xwe ya Sunnî bo Şiatiyê ragihand û heta niha jî ew li ser wê biryara xwe ye: "Eger hemû Şiayên dinyayê poşman bibin, ezê poşman nebim. Tiştê ku ez niha dizanim, eger birayên Sunî jî bizanin, bêguman ew jî wê werin ser boçûna min."

Mela Seyid Îsa sala 1969'an li navçeya Şiwanî ya girêdayî Kerkûkê ji dayikbûye. Ew berê li ber destê bavê xwe ku li Kerkûkê pêşnivêj û xutbebêj bû, dersên olî xwandine. Seyid niha li Silêmaniyê, li Şaxê Dezgeha Mihrabê ku girêdayî Civata Bilind a Îslamiye, rêveberê Beşa Quranê ye.

Yekem têkiliya Seyid Îsa ya digel Şiayan di 9 saliya wî de bûye. Ew digel bavê xwe çûye Kerbela û Necef û li wir wan serdana gora Îmam Elî kiriye: "Di demekê de bavê min mijûlî xwendina Quranê bû, zarokek hat û pirtûkek da destê min, ez bawer im ew dilê ziyaretkaran bû. Ez jî wî zarokî xeyidîm û min jê re got 'here kafir'. Bavê min bi ken temaşê min kir, min jî wî re got; ev Şiaye dixwaze min kafir bike. Lê bavê min ez têgihandim ku ew ne kafir in."

Mela Seyid niha gelek hizra wê serpêhatiyê dike û dibêje: "Ez nizanim çawa ez hînî wê yekê bibûm ku Şia kafir in, mixabin ku di civaka me de xelk li dû rastiyan nagerin û tenê weke teqlîd tiştan dibêjin." Cara yekem ew bi rêya Turkmenekî Şia li despêka salên 80'yan li Kerkûkê ket bin tesîra mezheba Şia: "Wê demê temenê min 15 sal bûn, ez li hemberî pirsên wî dostê xwe yê Şia, hertimî gêj û bê bersiv bûm."

Ji wê demê heta xwendina li Hewzeyên Kerbela û Necefê dikeve mêjiyê Seyid Îsa û wî ew bahis li cem bavê xwe dike: "Bavê min ji min re got; kurê min tu kurd î li ser mezheba Îmamê Şafî, baş nîne tu biçî. Xwesteka wî bû ew derbarê hezretê Îsa, Marksîzim û olên din jî zanyariyan bistîne. Wî li dawiya salên heştêyan pirtûka bi navê 'Wehabî Di Tirazûyê de' ku ya nivîskarekî Şiaye, bi dest xist. Wê pirtûkê pir tesîr li wî kir.

**"Kurd û Şia hertim bindestbûn"**

Li cem Seyid Îsa, diyartirîn xala hevbeş a navbera Şia û kurdan de ew e ku bi dirêjahiya dîrokê her du alî bindestbûn. Tişta seyir jî ewe ku di guhertineke siyasî ya jî nişkanve, ew herdû aliyên tepeserkirî bi hev re bûn listikvanên rola sereke di meydana siyasî ya Îraqê de. Ew herdû alî di helwestên xwe yên siyasî de, hertimî jî hev nêzikbûn. Dibe ku sarbûna Kurdan ya li hember meseleyên mezhebî û têkelnebûna wan digel wê milmilaneyê, vegere wê yekê ku ev jêbûn (întima) mezhebî digel Kurdan dadwer nebûye. Di Îraqê de kurd Sunî bin yan Şia, ew ketine ber êrişên qirrkirinê. Di nava Şiayan de kesekî wek Seyid Muhsin Hekîm tune; wî kuştina kurdan weke "kafirbûn" binavkir: "Eger jî min bipirsin çima Enfal çêbû? Ji ber ku destên Ebasiyên ku Baasî dirustkirine, di Enfalê de hebû. Ez bawer im eger ew darbe di îslamê de nehatiba kirin, mirovatî rastî vê hemû zulmê ne dibû."

Bi vê yekê jî baweriya wî bi Şiatiyê gelekî qayîme, ew dibêje: "Eger hemû Şiayên Kerbela, Necef û dinyayê jî poşman bibin, ez qet poşman nabim."

Di seredaneke xwe de ya jî bo Kerbela û Necefê, Mela Seyid Îsa çûye cem Seyid Elî Sîstanî. Ew derbarê wê hevdîtina xwe ya digel wî zilamê mezinê mezheba Şia dibêje: "Zulma ku li kurdan hatiye kirin, gelek tesîr li Seyid Sîstanî kiriye. Ji wî re qet seyir nebû ku ez bûme Şia, çunkî haletên mina min pirin û ew her roj wan dibîne."

Tişta balkêş ew e ku 23 sal in di mala Seyid Îsa de, Şia û Sunî bi hev re dijîn. Heta niha xêzana wî nebûye Şia "Ez destê xwe naxim nava azadiyên kesan. Ew bi gorî rêbaza Sunnî nivêj, rojî û cejnên xwe dike." Derbarê zarokên xwe jî got "Ew dinavbera min û xêzana min de neketine aliyekî, lê hinekî nêzîkî minin. Ez nikarim bibêjim ku zarokên min Şia yan Sunî ne."

**Şia bi eşkerayî bahsa hertiştî dikin**

Kesekî din ku bêtirî 12 salane pişta xwe daye Suniyan û berê xwe daye mezheba Şia, Karzan Mela Zadeyê xelkê Hewlêrê ye. Karzan li dawiya salên notan de xwendekarê Zaningeha Duhokê, Koleja Şerîetê bû: "Weke xwendekarekî gelek pirs li cem min dirustbûn û ez li bersivên wan digeriyam. Cudahiya Sunî û Şiayan ew e ku Sunnî tiştan vedişêrin. Lê di nava Şiayan de hemû tişt bi eşkerayî tê behiskirin."

# Team Mart wê li Hewlêrê 50 marketan veke

**ARÎ OSMAN**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Şirketa Team Mart pênc marketan li bajarê Hewlêrê vedike û niyet dike ku 50 marketên din jî li navçeyên girêdayî Hewlêrê veke. Rêvebirê giştî yê Team Mart ji Rûdawê re daxuyand ku ew bi niyet in li hemû bajar û bajarokên Îraq û Kurdistanê marketan vekin.

Grûba şirketa Team Mart ji 67 bazirganan pêk tê. Rêveberê giştî yê şirketa Mihemed Îsmaîl got: "Rûpîvana wan marketên ku em li bajêr ava dikin, ji 250 metrekare kêmtir nîne."

Di van çend salên borî de çendîn sûpermarket û mînîmarket li bajar û bajarokên Kurdistanê hatine vekirine. Niha jî pêla herî mezin ya vekirina marketan hatiye Kurdistanê, bi taybet jî li bajarê Hewlêrê. Pirraniya wan jî di bin navê marketa "erzan" an jî hezarî, du hezarî û 1 dolarî hatine vekirin.

Jî derveyî vekirina çendîn sûpermarket û komên mezin, meha borî bi navê Macidî Mail çarşiyek jî hat vekirin.

Rêvebirê şirketa Team Mart daxuyand ku marketên wan bi sistemekî taybet têne rêvebirin. Ew jî ew e ku nirxê tiştên di nava marketên wan ên ji Dihokê heta Besrayê, bi yek nirxî ne. Herwiha got: "Nirxê tiştên me jî yên marketên din erzantir in."

Navborî pilana grûba xwe eşkere kir û got: "Despêkê emê ji bajarê Hewlêrê dest pê bikin. Heta niha me 5 market vekirine û bi niyet in hêjmara marketên li bajarê Hewlêr bigihînin 50 marketan. Herwiha emê marketan li tevaya bajarên Îraq û Kurdistanê jî vekin."

# Ergenekonciyên "Cumhuriyeta kemalist" cardin xwe nîşan dan!



Bayram Ayaz

Demê xebera "nesaxiya" rêberê PKK'ê belav dibe, pê re tirs jî peyda dibe. Me vê tirsê nivîsîbû.

Emê vê heftê hinek guman û gazindên xwe jî bi we re parve bikin.

Pêvejoya rêlibervekirina demokrasiyê ne bi dilê "Komara kemalist" e. Bi taybetî niqaşên derheqê Dersimê û Kurdan de bêhna wan çikand, êdî nekarî xwe bigirin, dest bi provakasyonan kirin.

Mijara Dersimê û Alewiyan jî bo kemalistan giring e. Alewî piştevanên sereke yê kemalistan in. Bi van niqaşan qelşeke fereh xist nav Alewiyan û Cumhuriyeta kemalist.

Diviyabû pêşî li vê yekê bê girtin. Diviyabû zûtirîn dem rojev bê guhertin.

Çi kirin? Serokê Yarsavê Omer Faruk Eminagaoğlu û hakimê Dadgeha Cezayên Giran ya qeza Sincanê Osman Kaçmaz pirsa "guhdarîkirina Yargitay"ê anîn holê. Ev kes, du peyayên piştevanê doza Ergenekonê ne, bi biryara dadgehê telefonên wan hatiye gohdarîkirin, ji ber gumanên peywendiyên wan bi Ergenekonciyan re.

Piştre çi bû? Baroya Stanbolê vê mijara guhdarîkirinê kir hincet û meşiya. Serokê Baroya Stanbolê bi hevaltiya ergenekoniyan tê rexnekirin. Li qora herî pêş sê parezêrên doza Ergenekonê serkêşiya meşê dikir. Ev kes û dezgehên qaşo dadparêz, li dijî karên darbeciyan qet deng û hes jî wan derneketiye.

Piştre çi bû? Provakasyona Îzmirê, Mersînê, Amedê û molotofên "xortan" li dû hevdu rojeva Tirkiyeyê dagir kirin.

Di vê demê ku "xortan" li kolanan maytap û molotof diteqînin, rojeva DTP'ê û piraniya Kurdan jî bi mezinahiya odeya A. Öcalan ve hat girêdan. Niqaşa Dersimê... mafê gelê Kurd... prosesa hewldanên demokrasiyê... ev mijar hatin jibîrkirin, EL FATÎHA!

Mejiyê xortan û hezaran welatperweran bi oda Öcalan ve û bi êşa qirika wî û bêxewiya wî ve hat girêdan. Parezêrên Öcalan û hinek DTP'yiyan wisa li meselê anî, mirov dibê belku ev oda nû wekî "odeyên xazê yê kampên Hitler" e! Jî mafê kesê nîne, di pêvejoyeke wisa xesas de "panîk"ek bi vî rengî di nav gel de peyda bike. Mercên zindanbûnê helbet zahmet e û mirov divê hertim jî rewşa zindaniyan agahdar be, mafê wan biparêze. Lê wisa xuyaye gelek kêm û kurtî di agahdariyan belavkirî de heye. Ev aliyekî mijarê. Aliyê din, em wisa qebûl bikin ku teda zêde bûye, rêberekî hêzeka siyasî xurt divê lê şiyar be û nehêle ku jiber rewşa wî, rojeva siyasî ya ji berjewendiya tevgera gel were guhorîn. Berevajiya vê qewimî. Rewşa rêberê PKK'ê ket pêşiya doza gel û welat û bû sedem ku rojeva siyasî ya Tirkiyeyê berqulubî bû! Kî vî tiştî dixwest, kî bû alet û rewş giha ku derê ? Herkes bila destê bide ser wijdana xwe û bersiva vê yekê bide.

Gelek dijwarî li pêş vê pêvejoyê heye, lê hêvî jî zêde ye. Dixwazim, du tiştan bêjim: Miletê Kurd xelkekî qedirşinas e, lê divê mirov bi qedirşinasiya civakan nelîze! Xapandina xelkê gunehbarî ye. Rastiyek heye, divê em bizanin, ku ti rêber û pêşewa ji xelkê xwe ne bi qedirtir û rûmettir e!

Ev hemî tişt ne bes bû. Doza DTP'ê ya li ber destê Dadgeha Destûrê, ku ev du sal bû hatibû "cemidandin", ji nûve daxistin rojevê. Piştî sê rojan (08.12.2009) Dadgeh wê dest bi darizandina huqûqî bike û biryarê bide!

Bersiva DTP'ê çi bû? "Emê îstifa bikin û vegerin nav miletê xwe."

Tirkiye û tevgera gelê Kurd derbazê qonaxeke nû dibe. Dê çi biqewime hêj ne diyar e.

Bi rastî nuha dem dema analîstên fîlozofiya siyasetê û rojnamevaniya lêkolînerî ye. Mirov divê li dû rastiyan bikeve, bibîne û bide ber destê gel. Her wisa peywendiyên nabera bûyeran bi metodên zanistî binirxîne, bigihe encaman û xelkê re ronî bike. Lê bixebite ku "Cumhuriyeta kemalist ya ergenekonî" nikaribe bi me bilîze.

Di nivîsareke kirt de nirxandina mijarê bi her alî ve zahmet e. Ev sê çar roj in, ji bo vê meqaleyê li sernivîsareke tîr û tije difikirim. Yên min nivîsiye, li jêr in. Eger mirov wan pevdû ve girêde, bawer im dê wêneyek jê xuya bike.

Şerê cumhuriyeta kemalist li dijê demokrasiyê û kurdan gur bû.

Statukociyan dest bi hemleyeke nû kirin.

Hedef têkdana pêvejoyê û guhorîna rojevê ye.

Armanc bi tirkçitiyê AKP'ê lawaz bikin û hilbijartineke pêşwextî çêbikin.

Dewleta kur li ser kar e, Ergenekonê xistin hereketê.

Moltofên "xortan" Ergenekoniyan dilxweş dike.

Hêzên ku li Amedê êrişê AKP'ê û Şura-Der'ê kirin divê ji gel re werê aşkere kirin.

Navenda ku hakiman û baroyan dixe hereketê, dixwaze bi riya Dadgeha Destûrê DTP'ê bide girtin.

DTP'ê û AKP'ê berdin hevûdu, DTP'ê ji meclîsê bavêjin.

Emine Ayna bi çi eqilî û bi çi hêz û wêrekî dibêji "açılım bitti!"?

Pêşîlêgirtina prosesa sivîlîzekirin û dawîleanîna şerê çekdarî.

Hewce ye şaxê Ergenekonê ya nav kurdan jî were eşkere kirin.

Andıça medyayê, planên wek Ayışığı, Eldiven, Yakamoz, Kafes... Gelo navê plan û harekata ku nuha xistine meydanê çi ye?

Kontrola hepsa Îmraliyê divê bi temamî derbasê hukumetê bibe. Rewşa rêberê PKK'ê bi temamî şefaf bibe.

Derman bihêzkirina demokrasî ye.

Dr. Emin Dindar:

# Kujer kifş in, cînayet siyasî ye!



*Selim Dindar di 1980 - 1983'an de di zindana Amedê de bû.* *(Wêne: Schoman Djoumma)*

**Stenbol (Rûdaw)** – Karmendê kurd Mehmet Selim Dindar hefta borî, di encama êrîşeke çekdar de, li Komeleya Cizîriyan a Stenbolê jiyana xwe ji dest da. Dindar yek ji girtî û şahidê zindana Amedê yên salên heştiyan bû. Birayê wî Dr. Emin Dindar ji Rûdawê re ragihand ku kujer kifş e û ew li benda edaletê ne.

Dr. Emin Dindar di derbarê bûyerê de ragihand ku nûçeyên ku di çapemeniya tirk de derketine nerast in û ew bawer nakin ku bûyer bê pîlan e û birayê wî bi qestî hatiye kuştin. “Heft gule li Selim ketine. Heft gule bi şaşitî li ti kesî nakevin. Malbata me naskirî ye, Selim jî bi welatparêziya xwe kesekî naskirî bû. Ew kujer jî nas in û em dizanin ku bûyer ne bi şaşitî qewimiye.” Li gor Dr. Emin bûyera ku şeva çarşema borî li ber Komeleya Cizîriyan qewimiye, êrîşek organîzekirî ye: “Em naxwazin pirsgirêk mezin bibe, lê birayê min bi zanabûn hatiye kuştin. Bûyer siyasî ye. Ji ber herdu kujer wek nijadperest û dijminên kurdan tên naskirin. Kesê ku gule li Selim teqandiye ji navçeya Çarşamba ya Samsunê ye û herkes wî baş nas dike.”

Dr. Emin Dindar bibîrxist ku di bûyerê de 7 kes jî birîndar bûne. Parêzerê Komela Cizîriyan Adnan Tüzün bûyerê ji nêz ve dişopîne û ew ji rayedarên dewletê hêvî dikin ku bûyerê ronî bikin û sûcdaran ceza bikin. Tüzün jî ji ajansa nûçeyan DİHA'yê re ragihand ku bûyer ne siyasî ye, lê bi qestî ye.

Herwiha hate ragihandin ku yek ji kujeran, Serhan Ak, di dema hilbijartinên sala borî de xebatkar û endamên DTP'ê tehdît kiriye.

Şeva çarşema borî li Stenbolê taxa Osmaniye li ser navçeya Bakirköyê du kesên çekdar davêjin ser komeleya Cizîriyan û li Selim Dindar û kesên gel wî gule direşînin. Di bûyerê de Selim Dindar bi 7 guleyan jiyana xwe ji dest dide û di nav de du pismanên wî 7 kes jî birîndar dibin. Cenazeyê M. Selim Dindar li Stenbolê hat veşartin.

Dindar îşkenceyên ku di salên 1980'an de li zindana Amedê hatibûn kirin di hevpeyvînên ligel çêndîn rojnameyên tirkî wek Milliyet, Radikal, Haber Türk anîbû rojevê û gotinên wî di raya giştî de bandoreke mezin kiribû. Dindar zewicî û bavê kurekî 17 salî bû.

## Selim Dindar



Çiya Mazî

Qet ne li ser bala min bû, ew kî ye, wisa ji dil êşên ku li zîndana Diyarbekirê kişandiye ji kamêra re tevlî hêstiran vedibêje. Destê xwe li sînga xwe dida û wekî bibêje: “Li van cil û bergên xweşik nenêrin, guhdar bikin ku çi kişandiye bedena di bin wan de.”

Çi bûbû ku piştî 25 salan jî hêstir ji çavên Selim Dindar dianî û bi wî qilafetê xwe yê gir diricifî. Alavê agir ji ser çavan difûriya û dest û lepên wî li hewa dilîstin. Wekî zindî diçû û di hucreyên çik ên cemidî de xwe bi çoyên gemarî re germ dikir dîsa.

Belê bi rastî pirên kurdan zanin û gelekan ji wan ew wahşet dîtine. Lê yên ku nedîtine jî li himber wê vegotina Selim Dindar ku behsa “Law li ber bav dihat îşkencekirin” dikir û mahşera di nava ava pîs de ji mirovahiyê re dida xuyakirin, hêdî hêdî hêstir dibarandin, ez bawer dikim.

Lê dema bi hêstiran re lêvikên wî dilerizîn û xwe bera hundurê min dida, hestên wî xwe li bin guhê dilê min jî dixistin û di hundurê min de dibû teqîna tofaneke bilind. Tevlî ku min wî nas nedikir jî, tenê wek kurdekî di hişê min de xwe bi tundî bi cîh kir û bi rojan qurincik li hestên min da.

Bi rojan ez û zarokên xwe li benda hevpeyvîna ku TV'yeke kurd pê re kiribû man û li benda dubareyê jî. Em li bendê man heta ku çend roj berê me di nûçeya “Li komeleya Cizîriyan yek hatiye kuştin” dît û me wêneyê wî di cama bi sir de, bi peroşiyeke tirsnak û tije halan temaşe kir.

Ew bû…

Belê ew bi xwe bû, yê ku ji bo em jî bi wî re bigirîn qey em li bendê mabûn. Ewê ku devoka Cizîrê kiribû mertal li himber zilmê. Ew bû, yê ku digot “Egere ez careke din bêm dinyayê, ez naxwazim kurd bêm” û koç kiribû ji vê dinyaya bê rehm.

Xuya bû diyariyek bû ji hezarên ku di zîndana Diyarbekir re derbas bûbûn. Ti mafê wî nemabû ku bijî, piştî wan îşkenceyên ku kişandibû... Mirinek wisa; li kolaneke dûrî axa bi hesreta wî, bi guleyeke ji bêrîkên qirêj firiyayî bû para wî.

Ku min bihîst, wekî gelek bûyerên ku ez ji dar de xistibûm, dîsa ketim. Bêyî hêsiran, îcar int û bêhntengiya min dîsa vegeriya ser dengê wî yê ku digot, “law li ber bav dihat îşkencekirin.”

Û ez ketim xeyalên wî, ketim hişê wî ku dixwest bibêje; “Hê ji me û te re heye zîndana Diyarbekir. Hê agirê di dilê me de netefiyaye. Hê di koza me de pilingên ji qurmên Zagrosan venemirîne. Qet û qet, deryaya hêstiran jî nikare vemirîne vî agirî. Heta ku bi pêlên xwe te neşewitîne zîndana Diyarbekir.”

# “Min ji dê û bavê xwe re digot komutan!”

**Köln (Rûdaw)** - Radyoya Funkhaus Europa beşa kurdî çend meh berê bi M. Selim Dindar re li Kölnê hevpeyvînek çêkiribû. Selim Dindar di hevpeyvînê de di derbarê zindana Amedê de axifîbû.

***Hûn ji sala 1980 heta 1983'an li zindana Amedê man. Gelo sedemê girtina we çi bûn?***

Malbata me nezî KDP'ê bû, malbateke kurdewar e. Ez li ser vê hatim girtin. Lê ez ne miroveki siyasî bûm, ez kurd im, ez siyasi hatim dinyayê. Kurdbûna min bi xwe sûc e. Dema ez hatim dinyayê ji min nepirsîn ka ez dixwazim bibim çi. Ez kurd hatim dinyayê, ev jî bes bû ji bo ez bêm girtin.

***Gelo we zanibû ku wê we bibin zindana Amedê?***

Beriya min bibin zindana Amedê, tiştê ku me zanibû ev bû: Kesên ku tên girtin li îşkencexaneyan gelek cûrên îşkencê wek elektrîk, jop, lêdan, asqîya Filistînê, feleqe, ava cemidî, ditîtin. Me digot piştî van îşkenceyan mirov dişînin hepsê, li wir mirov bê îşkence radizê, dema xwe derbas dike.

***Tişten ku we dîtin çawa bûn?***

Cehennem bû! Ew tiştên me li îşkencexaneyan dît, li ber zindana Amedê metodên kevin bûn, wek lîstik û tiştên demode. Wehşeta mezin me li wê zindanê dît. Wek mehşerê bû. Ev destên min hatin bizmarkirin. Bizmarên ku li dest û lingên Îsa xistin ne zincar bûn, paqij bûn, lê yê me zincar bûn, ne bi çakuçan, bi botên xwe yên leşkerî bizmar dikirin. Lêvên min qelişandin, diranên min hemû şikandin, sê cixare di destê min de şewitandin. Pîsî xistin devê min û gotin bixwe. Ev diranên min hemû porselen in, min diranên xwe kişandin.

***Piştî sê salan û îşkenceyan hûn derketin, bandora wan çi tişt li ser jiyana we kir?***

Kesê ku li wê zindanê raketibe, wan îşkence û eziyatan dîtibe û derkeve der, nikare dest bi jiyaneke normal bike. Ez 7 roj li cem dê û bavê xwe mam, min ji wan re digot, ‘emret komutanım.' Min lingên xwe bi nîzamî davêt û ez diçûm tûwaletê. Min nikaribûm bimeşiyam, du heval diketin milê min û alîkariya min dikirin. Ez dernediketim der, min fedî dikir û digot qey herkes li min temaşe dike.

***Niha li ser zindana Amedê nîqaş tên kirin û tê gotin ku zindan bê girtin. Hûn di derbarê mijarê de dixwazin çi bêjin?***

Dibêjin emê zindanê bikin dibistan. Ez li dijberê vêya me. Binêre, bavê Altan Tan li wê zindanê hat kuştin. Niha kurê Altan Tan heye û diçe dibistanê. Wê kurik here wê dibistanê û jê re çi bêjin? Bêjin, binêr me bapîrê te li vir kuşt!

Seroka DTP ya İzmirê Mukaddes Kubilay:

# Civaka tirk wekheviyê qebûl nake!

**İzmir (Rûdaw)** - Êrîşa ku li bajarê İzmirê li dijî konvoya DTP'ê pêk hat ji rojeva kurd û tirkan dernakeve. Rojname û televîzyonên dinyayê li ser vê êrîşê li pey hev nûçeyan diweşînin. Sosyolog û profesorên civakê, vê êrîşa xwedêgiravî li “bajarê demokrat” İzmirê weke şkestineke civakî bi nav dikin û behsa çirûskên şerê navxweyî yê kurd û tirkan dibînin. Zarokên kurdan ji ber kevireke biçûk bi cezayê heta 20 salan têne darizandin, lê tirkên ku bi kevirên xwe ve di medyaya dinyayê de derketin, hê jî bi serbestî digerin.

**“Jin, zarok, pîr, li her kesî xistin”**

Li ser van bûyeran seroka DTP'ê ya bajarê İzmirê Mukaddes Kubilay ji Rûdawê re axifî. Kubilay diyar kir ku her dem behsa İzmira pêşverû dikirin lê bi vê êrîşa faşîst ya ser partiya wan ve



*Mukaddes Kubilay*

rûyê wan ê rastî derketiye holê: “Lê dîsa jî bi vê êrîşê re ez şaş û metel mam. Min hêvî nedikir. Tişteke wisa ji İzmirê nedihat aqilê min. Jin, zarok, pîr, li her kesî xistin. Hevalên me ew hişyar dikirin ku zarok hene, lê digotin em hemûyan bikujin. Gelekî hov bûn, çavê wan sor bûbû… Her dem behsa İzmira rewşenbîr û demokrat dikirin, lê dema dor bê ser kurdan, hemû bi hev re faşîst in. Ev bûyera dawî jî tişteke pîlankirî bû; polîsan jî alîkariya wan kir. Eger polîs bixwesta, dikarî pêşî li vê bûyerê bigirta. Lê polîs jî cesaret da wan barbaran.”

Kubilay sedemek ji êrîşan jî mezinbûna partiya DTP'ê destnîşan dike, “Partiya me li Kurdistan û Tirkiyeyê her roj xurtir dibe, hêza me ya siyasetê zêdetir dibe. Em siyaseteke paqij dimeşînin. Naxwazin ku em di metropolan de pêş bikevin. Konvoyeke wisa heta niha qet çênebûbû, ji hêza me ditirsin.”

**“Di dinyayê de tişteke wisa çênebûye”**

Kubilay dide diyarkirin ku wan li balafirgehê serokê partiyê Ahmet Türk pêşwazî kir. “Konvoya me pir mezin û dirêj bû. Rê û rêçikên ku wê konvoya me tê re derbas bibûya ji xwe kifş bû, diviyabû ku polîs tedbîr wergirtana. Li ber avahiya partiyê piştî serokê me min axaftinek kir, dû re telefon ji min re hat ku di rê de birek ji konvoyê sekinandine û êrîşî wan kirine. Min ji midûrê polîsan re jî telefon kir û jê re behs kir ku divê ewlekariya me misoger bikin, lê polîs ti alîkarî nekir û di ser re jî li êrîşê temaşe kir. Ji ser zinarên bilind re kevir avêtin konvoya me. Yanî ew roj li wir jin, mêr, ciwan, zarok û her kesî bi hev re bi keviran êrîşî konvoya me kirin. Nêzîkî 70 erebeyên me şikandin, nêzîkî 50 mirovên me jî birîndar bûn, serê keç û zarokan şikandin. Di bûyerên wisa de li Kurdistanê bombeyên çavsotîner davêjin, lê li vir polîs temaşe dike. Di dinyayê de tişteke wisa çênebûye.”

**Medya bingeha van êrîşan hazir dike**

Mukaddes Kubilay gotinê tîne ser helwesta medyaya tirk û behs dike ku hem êrîşî wan dikin hem jî ji hêla medyayê ve wekî kesên gunehkar têne binavkirin: “Medya bingeha van êrîşan hazir dike. CHP û MHP bi benzîn ve nêzîkî van pirsgirêkan dibin. Li hêla din jî serokwezîr bi daxuyaniyên xwe bi rengekî sûcê faşîstan vedişêre û civakê bera hev dide. Lê em hê jî bang li gelê xwe dikin ku bila neyên van tahrîkan, bila neyên leyîstokên dewletê, bila dev ji daxwaza xwe ya aştiyê bernedin. Bifikirin ku di vê êrîşê dawî de ti kes ji kesên êrîşkar nehatiye binçavkirin jî. Di ser de hevalên me yên birîndar girtin binçavan. Gelo li tiderê dinyayê qanûnek wisa heye?”

Kubilay di dawiyê de bang li civakê dike û dibêje ku divê her kes li dijî vê faşîzmê bisekine, “Heta ku li Tirkiyeyê mafê kurdan jî nebe wekî yên din, heta çand, ziman û hebûna kurdan neyê qebûlkirin tu tişt safî nabe.”

## Xwendekarê kurd Şivan Ebdo çi bike?

# "Her aliyek, min bi hevkariya bi aliyê din re tawanbar dike"

*Xwendekarê kurd Şivan Ebdo dixwest ku zanîngehê kita bike, lê tiştên ku qet xeyal nedikir, hatin serê wî. Ew li Suriyê hat girtin, ji girtîgehê derket berê xwe da Herêma Kurdistanê. Li wir wî bi muxbîrtiyê tewanbarkirin; bi dizî vegeriya Suriyeyê û dîsa hat girtin. Li wir jî hat tewanbarkirin ku ji Herêma Kurdistanê re muxbîrtiyê dike...*



*Hêzên ewlekariya Suriyê û xwepêşandana xwendevanan.* (Wêne: Rûdaw)

**SÎRWAN H. BERKO**

**Berlin (Rûdaw)** - Xewna Şivan Mihemed Hesen Ebdo ew bû ku xwendina xwe ya zanîngehê biqedîne, da ku jiyaneke bextewer bijî. Lê çarenivîsa vî kurdê bextreş rê li ber biciîanina vê xewna wî digire. Li şûna ku ew bizewice û zarokên wî çêbibin, Şivanê 28 salî niha mecbûr e ku bikeve şûna bavê xwe û malbata xwe xwedî bike. Di navbera xewnê û ketina vê rewşê de pênc salên tije êş û azerî derbas bûn.

Di destpêka adara 2004'an de hîn rewşa Şivan Ebdo bi xêr bû: Wî hingî li Zanîngeha Şamê di beşê endezyarê de dixwend. Lê di nav çend rojan de planên wî tevlihev bûn û wî êdî nas kir ku ewê nema karibe bibe endezyar. Di wan rojên adarê de li Qamişloyê serhildanekê dest pê kir û li seranserî Sûriyê belav bû. Şivan ji yek ji goriyên çewisandina wê serhildanê ye. Di 29'ê Adara 2004'an de Dadgeha Bilind a Ewlekariya Dewletê li Şamê ji ber "weşandina agahiyên sexte" du sal û nîv zindan li xwendekarê kurd birîn. Gunehê wî ew bû ku wî di bûyerên Adara 2004'an de di înternêtê de nivîsarek li ser çewisandina xwendekarên kurd li Zanîngeha Şamê weşandibû. Piştî heft mehan ji girtina wî malbata wî pê hesiya ku kurê wan li ku girtî bû. Şivan wan rojên tije êş û işkenyê berdewam tîne bîra xwe: "Min bawer nedikir ku ez ketibûm wê rewşê, min nedixwest bawer bikim ku dawî li xewna min a xwendinê hat." Lê her ku roj û meh derbas dibûn, Şivan mecbûr bû wê rastiya tahl qebûl bike. Girtina wî ya bêtirî du salan ne bes bû, ew bi ser de jî ji hemû mafên medenî hat bêparkirin û biryarek din jî derket, ku ji bo wî ya herî giran bû: qedexeya berdewamkirina xwendinê li zanîngehên Sûriyê.

Dema ew di dawiya 2006'an de ji zindanê derket, ti rê li pêşiya xwe nedît ji bilî çûna Başûrê Kurdistanê, da ku ew bikaribe li wê derê xwendina xwe bidomîne: "Hîn di zindanê de min bihîst ku derfet heye ku mirov li Başur bixwîne. Ji bo min ev yek derfeteke zêrîn bû."

Hîn çend roj di ser derketina wî re derbas nebûbûn, Şivan biryar da ku biçe Hewlêrê. Lê ji ber ku derketina ji Sûriyê li wî hatibû qedexekirin, ew mecbûr bû ku di rêyeke qaçax re derbasî herêma Kurdistanê bibe. Lê kêfxweşiya Şivan li Hewlêrê dirêj nekir: Ew mecbûr bû du salan bimîne ta ku wî mafê rûniştina mayîna li Kurdistanê bi dest xist. Şivan keseran dikişîne û dibêje: "Asayîşa Kurdistanê jî min bawer nedikir û ez bi hevkariya bi muxaberata Sûriyê re tawanbar dikirim. Ez heta roja îroj hîn jî nizanim bê wan çima ev yek dikir." Lê Şivan dawî îqama xwe stend û sala borî li Zanîngeha Hewlêrê dest bi xwendina psîkolojiyê kir. Şivan bi hêviyeke mezin a jiyaneke xweştir vegeriya jiyana xwe ya xwendinê û roj bi roj hêviyên wî mezintir dibûn. Ta hazîrana isal.

Di hazîranê de Şivan agahiya mirina bavê xwe ji malê bihîst. Wî yekser biryar da ku vegere gundê xwe li navçeya Dêrikê. Ji ber ku pasaporta wî tuneye û ew berî sê salan bi qaçaxî ji Sûriyê derketibû, ew mecbûr bû ji xwe re li rêyekê bigere ku di wê re derbasî Sûriyê bibe. Demek dirêj derbas nebû û wî ji xwe re qaçaxçiyek peyda kir. Rêberê wî 500 Dolar jê dixwaze. Şivan xwesteka wî dipejirîne û bi hevalekî xwe yê din re, ku ji bo kar hatibû Hewlêrê, di 21ê Hazîrana isal de dide ser rêya gundê xwe. Lê wî nizanibû ku wî 500 Dolar ji bo girtina xwe dane. Dema ew sinorê di navbera Îraq û Sûriyê de derbas dike, endamên hêzên ewlekariyê yên Sûriye pêşwaziya wî û hevalê wî dikin: "Em vecîniqîn dema me polis li pêşiya xwe dît." Şivan dibêje û berdewam dike ku piştre wan nas kir ku qaçaxçî bi muxaberata Sûriyê re kar dike.

Piştî çar meh û nîvê ji mayînên di zindanên Dezgeha Ewlekariya Dewletê, Dezgeha Ewlekariya Siyasî û Dezgeha Muxaberata Leşkerî li Qamişlo, Şam, Hums û Helebê ew di 8'ê meha borî de serbest berdan. Li Helebê Şivan nedixwest bawer bike dema dadwer jê re got ku ew ji ber çend sedema hatiye girtin, ku yek ji wan hevkariya bi asayîşa Kurdistanê re ye! Şivan Ebdo dikene dema gotinên dadwerê leşkerî li Helebê tîne bîra xwe: "Li Kurdistanê min bi hevkariya muxaberata Sûriyê gunehkarkirin, li Sûriyê jî min bi hevkariya asayîşa Kurdistanê gunehbar kirin. Ez nizanim herdu aliyan ev agahiyên bêbingeh ji kû anîne."

Tevî ku ev dora mehekê ye ku Şivan Mihemed Hesen Ebdo azad e, lê doza wî hîn nehatiye girtin. Dadwerê leşkerî li Qamişloyê hîn biryara roja darezandinê nedaye. Hîn Şivan nizane bê çi li pêşiya wî ye, lê wî jî niha ve biryar daye ku êdî venegere Hewlêrê û li mala xwe bimîne: "Dema ez li Kurdistanê bûm, min got ku ez nikarim vegerim Sûriyê. Bi rastî jî gerek bû ez venegeryabama, ji ber min zanibû ku ezê bêm girtin. Lê min nikaribû malbata xwe bitenê bihêlim." Şivan mecbûr e li dê û xuşk û birayên xwe yên biçûk miqate be û karekî bike, da ku bikaribe malbata xwe xwedî bike. Şivan dawî li jiyana xwe ya xwendekariyê anî. Ew êdî bûye bav.

## Gobadî li Japonya hat xelatkirin

# Îranê ez qewirandim




*Behman Gobadî* (Wêne: Rûdaw)

**Köln (Rûdaw)** - Derhênerê kurd Behmen Gobadî, ku demeke li derveyê Îranê dijî, bi fîlmê "Kes Le Pişile Êraniyekan Xeberî Niye" xelata taybet a endamên lijneya navbijên festîvala navnetewî "Filmex" li Tokyo vergirt. Behmen Gobadî di festîvalê de ragihand ku wî nedixwestiye ji Îranê derkeve, lê wan ew derxistine.

Behmen Gobadî di hevpeyvînekê de li gel Radyo Ferda di derbarê daxwiyaniyên dawî yên derhênerê navdar ê Îranî Ebas Keya Rostemî de ji wiha axifî: "Bi baweriya Keya Rostemî em ji Îranê derketine û ew ji wek ku qehremanek be li Îranê maye. Lê ev ramaneke xelet e jiber me bar nekiriye. Tu kes bi kêfa xwe ji Îranê derneketiye."

Gobadî di dirêjiya axaftina xwe de ji wiha got: "Rêzdar Keya Rostemî dibêje ku tîmên fîlmên min derfetek bû bo derketina min ji Îranê, lê ev gotin ne rast in. Tî kes bi kêfa xwe ji welatê xwe dernakeve. Ez amade bûm bist, si, çil salên din jî li Îranê kar bikim û min nedixwest ji welêt derkevim, lê di rastiyê de ez hatim derxistin."

Navbirî axaftina xwe wiha qedand: "Ev rewşa xirab ku sinema Îranê tê de dijî û bi vê rêveberiya şaş ku di van çend salan de diyar e, di atmosfêreke wiha de rê bo pêşandana fîlmên wek 'Kes Le Pişile Êraniyekan Xeberî Niye' nayê dayin. Nemaze ev fîm dikaribû bibe yek ji pir dahatirin fîlmên sînemaya Îranî ku mixabin ev derfet ji destê min çû."

# Nivîskar Pîr Rustem jî hat girtin



*Nivîskar Pîr Rustem*

**Efrîn (Rûdaw)** - Çend rojan piştî vegera wî ji Herêma Kurdistanê, nivîskar û çalakvanê kurd Ehmed Mihemed Mistefa li Cendirêsê nêzîkî navçeya Efrînê hat girtin. Mistefa, ku bêtir bi navê Pîr Rustem hatiye naskirin, di 5'ê Çiriya Paşîn a 2009'ê de ji aliyê hêzên ewlekariya siyasî yên rejîma Sûriyê ve hat girtin. Heta niha nayê zanîn ku ew li kû hatiye girtin û di çi rewşê de ye. Ji bilî xebata wî wek nivîserê çîrokan – çar pirtûkên wî yên bi zimanê kurdî hene – Pîr Rustem herweha endamek çalak di Partiya Demokrat a Kurdî li Sûriyê (el-Partî) ye û di Encûmena Niştimanî ya Daxuyaniya Şamê jî de ye. Pîr Rustem zewicî ye û bavê du zarokan e.

**Rûdaw**

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de **Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81 **Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

# Li Kurdistanê dîsa kuştî, birîndar û girtî

**Amed/Köln (Rûdaw)** - Ji bo protestokirina rewşa zindana Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan di 5 û 6'ê kanûnê de, li Amed, Cizîr, Qoser, Riha, Êlih, Sêrt, Wan, Colemêrg, Şemzinan, Bazid, Wiranşêr, İzmirê, Stenbolê û gelek bajarokên Kurdistan û Tirkiyeyê xwepêşandanên cuda hatin lidarxistin. Bi hezaran kurd dawiya hefta borî li gelek welat û bajarên Ewrûpayê ji çalakî lidarxistin.

Polisê tirk li gelek deveran bi tûndîtêrişê xwepêşandanan kir û li Amedê ciwanê bi navê Aydın Erdem (23) di êrişa polisan de bi 2 guleyan jiyana xwe ji dest da.

Roja 6'ê Kanûnê bi armanca şert û mercên Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan şermezar bikin bi deh hezaran kes daketin kolanan. Rayedarên dewletê li ti ciheki destûr nedan ku kurd xwepêşandanan lidarbixin. Di meşa Rihayê de 34 kes, li Sêrtê 50 kes, li Cizîrê 17, li Bazidê 15 kes û li Stenbolê jî 26 kes hatin binçavkirin; li Cizîrê û Qoserê ji polis bi guleyên plastik û bombeyên gazê êrîşê girseya gel kir. Li Navçeya Silopi ya Şirnexê di pevçûna navbera polis û girseyê de wesayita polisan li zaroka 5 salî ya bi navê Yasemin Yakaemir xist. Ciwanê bi navê Fırat Atılmış ji ku bi bombeya gazê ji serê xwe birîndar bû.

Di bûyeran de heta niha bi dehan kes birîndar bûn û nêzîkî 300 kes hatin girtin. Di êrişan de mebûsên DTP'ê jî bûne hedef.

**Di xwepêşandanên li Amedê de xwîn rijiya**

Di bûyerên Amedê de roja yekşemê ciwanê bi navê Aydın Erdem (23) bi guleya polisan hat kuştin. Parlamentera DTP'ê ya Amedê Aysel Tuğluk ji Rûdawê re ragihand ku wan bi armanca nerazibûna gel diyarbikin roja yekşemê wek mafeki demokratîk xwestine bimeşin lê daxwaziya wan ji aliyê rayedarên walî û polisan ve nehatiye qebûlkirin: "Di nava gel de nerazîbûniyek û hassasiyet hebû. Gelê me di mijara tendurustiya Öcalan de pir hişyar e. Me wek daxwaz ev yek ji rayedarên herêmê re pêşkêş kir. Lê wan rê neda me û polis 8 caran êrîşê meşa me kirin. Herçend zanibûn ku em jî di nava gel de ne, dîsa jî bi tûndî êriş kirin. Çavdêr û şahidan dîtine ku polis nişan girtiye û gule bera Aydın Erdem daye. Guleyek li li singê wî ketiye û guleya din jî li pişta wî ketiye û kezeba wî perçekiriye."



*Li Amedê di êrişa polisan de xwendevanê Zaningeha Dicleyê Aydın Erdemê 23 salî hat kuştin.*

Hat ragihandin ku Aydın Erdem ji Navçeya Mahsertê ya Mêrdînê ye û xwendekarê pola 3'em a Zaningeha Dicleyê ye.

**Li Ewrûpayê meş, grevên birçîbûniyê û dagîrkirin**

Li Ewrûpayê jî dawiya heftê kurd bi amanca şermazarkirina şertên Öcalan ên di girtîgeha nû de, meş û grevên birçîbûniyê lidarxistin. Li London, li Awusturyayê li bajarên Salzburg û Bregenzê, li Fransa li bajarê Bordeauxê û li Almanya bajarên wek Hannover, Oldenburg û Lohnê grevên birçîbûnê hatin lidarxistin; konên grevan ji aliyê gel ve hatin ziyaretkirin û belavok hatin belavkirin. Li Almanya bajarê Dortmundê ji roja 6'ê Kanûnê kurd bi armanca şermazarkirina şertên Öcalan li pêşiya istasyona navendî civiyan û meşiyan.

Ciwanên kurd ji bo bala raya giştî ya Ewrûpayê bikişînin ser rewşa Öcalan li çend deveran saziyên Yekitiya Ewrûpayê dagirkirin û xwepêşandanên cuda lidarxistin. Hefta borî ciwanên kurd li bajarê Swîsreyê Bernê istasyona navendî dagirkirin û li paytexta İtalyayê Romayê jî avahiya Rêxistina Efûyê ya Navnetewî û avahiya CPT'ê dagirkirin. Li Romayê ciwanên kurd pankartek li dîwarên avahiya Konsolxana Tirkiyeyê daleqandin. Roja yekşemê jî komek ciwan li bajarê Fransayê Marsilyayê avahiya nûnertiya Parlamentoya Ewrûpayê dagirkirin.

## "Öcalan ji hemû mafan bêpar e"

Parêzerê Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan Ömer Güneş ji Rûdawê re ragihand ku Wezareta Dadê ya Tirkiyeyê tecrita ser Öcalan di pişt gotinên "santîmetreqare û metreqareyan de" vedişêre. Güneş daxuyand ku pirsgirêk ne mezinahî û biçûkahiya hucreya nû ye: "Hucreya ku niha Öcalan tê de ye, ji ya berê biçûktir e. Cihê razanê, dolaba cilan ew odeya biçûk tengtir dikin. Em di derbarê mijarê de bi doktorê mikrobiyolojiyê re axif in û rewşa tendurisiya Öcalan jê pirsîn. Wek doktor jî tekez kir Öcalan 60 salî ye û pirsgirêkên wî yên bêhngirtinê hene. Ew odeya nû, girtîgeha nû ji bo tendurustiya wî xeter e. Pencereya odeya wî li banî ye û dema tê vekirin hewaya paqij nayê hundir." Güneş birbirxist ku 5 girtiyên nû birine İmralıyê lê heta niha Öcalan bi wan re hevdîtin çênekiriye: "Mafê wî heye ku di heftê de 10 saet bi wan re rûne, biaxife; lê hata niha ev yek pêknehatiye. Herwiha jî odeyên xwendinê, salona sporê jî heta niha ti sûd negirtiye. Me bang li CTP kiriye ku ew heyetekî bişînin İmralıyê û rewşa Öcalan li cih de temaşe bikin."



*Parêzer Ömer Güneş*

Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan piştî ku li hucreya xwe ya nû hatibû bicihkirin, ji parêzerê xwe re gotibû ku wî xistina çala mirinê dixwazin wî hêdî hêdî bukujin. Öcalan siyaseta AKP'ê jî wek 'tasfiyekirina PKK'ê û têkoşîna kurd' binavkiribû. Li ser daxuyaniyên Öcalan rayedarên PKK'ê bang li kurdan kiribûn ku dakevin kolanan û rewşa zindana Öcalan protesto bikin. Li ser vê yekê bûyerên hefta borî destpêkiribûn.

**"Bila Baykal û Bahçeli 11 roj li İmralı bimînin"**

Li aliyê din Şaredar û encumenên DTP'yî roja 4'ê Kanûnê di derbarê rewşa zindana Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan de li ber Rêxistina DTP'ê ya Amedê daxuyaniyekî dan çapemeniyê. Li ser navê 98 şaredaran, Şaredarê Bajarê Mezin ê Amedê Osman Baydemir got ku di demek hasas û xeter de de derbas dibin û li gelek bajaran nerehetiyek mezin heye û her ku diçe mezintir dibe. Baydemir wiha axif î: Eger Wezîrê Dadê difikire şert û mercên Öcalan baş in wê demê divê Serokwezîr Erdoğan, Baykal û Bahçeli ne 11 sal, bila tenê 11 rojên xwe li Girtîgeha İmraliyê derbas bikin. Wê demê ka bila binerin, merc baş in an xirab in."

## "DTP bê girtin emê ji parlementoyê îstîfa bikin"

Piştî mitînga DTP'ê ya İzmirê ku konvoya Ahmet Türk leqayê êrîşa nijadperestan hatibû Raportorê Dadgeha Destûrê ya Tirkiyeyê daxuyand ku wê di 8'ê Kanûnê de doza girtina DTP'ê binirxînin û wî daxwaz girtina partiyê kiriye. Daxuyaniya raportorê dadgehê atmosfera siyasî hinek din jî jidand û bû sedemê guman û nerazîbûnan.

Hevseroka DTP'ê Emine Ayna got ku eger dadgeh biryara girtina DTP'ê bide wê ji bo herkesî encameke giran derkeve holê.

Nivîskar Mehmet Altan jî ji Rûdawê re ragihand ku 'Tirkiye nikare biryara girtinê DTP'ê daqurtîne.'



*Hevseroka DTP'ê Emine Ayna*

Hevseroka DTP'ê **Emine Ayna** di derbarê biryara girtinê û êrişên li dijî partiya wan de daxuyand ku daxwazên kurdan kişf in û kurd dixwazin nasnameya wan bê naskirin û mafê xwesêriya demokratîk bê dayîn. Ayna biryara Dadgeha Destûrê ku wê di 8'ê Kanûnê de bigre, bibîranî û got girtina DTP'ê wekî ya HEP, DEP û DEHAP'ê nabe. Ayna ji bo Rûdawêwiha axif î: "Ku partiya me bê girtin emê ji parlamentoyê derkevin. Ev ne ji bo gefê tên gotin. Ji ber ku li ber me tu rêyên din namînin emê îstifa bikin."

Ayna destnîşan kir ku kurd jî, dewlet jî û dinya jî hatiye guhertin û pêvajoya demokratîk a ji bo çareseriyê ku çend meh berê hat destpêkirin niha bi dawî bûye: "Girtina DTP'ê wê ji bo hemû kesê encamên giran bîne. Tiştên ku ji niha û pê vê pêkbên wê pevçûn bin. Kurdan nekir, AKP'ê bi politikayên xwe ev pêvajo bi dawî anî. Wê dawiya AKP'ê jî ya Çillerê xirabtir be."

**An lêpirsîn, an girtin!**

Parlamenê Şirnexê **Hasip Kaplan** jî pirsên Rûdawê bersivand û daxuyand ku êrişên li dijî DTP'ê ji kolanan derbasî koridorên dadgehan bûye û herdiçe zêdetir dibe. Kaplan, êrişa nijadperastan ya roja 22'yê Mijdarê li dijî konvoya DTP'ê ya li İzmir û bajarên din bibîrxist û got ku, "Ji her alî ve bi ser me de tên. Ez bawer nakim ku refleksên bê pilan bin. Her gavê ku tên avêtin siyasî ne. Di 8'ê Kanûnê de wê Dadgeha Makezagonê di derbarê me de biryarê bistîne." Kaplan diyarkir ku doza li dijî DTP'ê hatiye vekirin siyasî ye û wê biryar jî siyasî be: "Ez nikarim jî niha ve bêjim wê biryar çawa be. Dibe ku biryara girtinê jî bidin, dibe ku di derbarê 221 endamên me de biryara lêpirsînê jî bidin."



*Prof. Mehmet Altan*

**"Tirkiye nikare vî barê rake"**

Nivîskarê Rojnameya Starê **Prof. Mehmet Altan** pêvajoyê wek têkoşîna siyasî ya yek mirovî bi nav kir. Altan jî Rûdawê re got ew naxwaze girtina DTP'ê xeyal jî bike: "Tiştê ku xuya ye, pêvajoya vebûnê ya demokratîk niha ketiye paş. Her kes jî her alî ve têkoşîna siyasî dike. Di nav dewletê de wek xuya dike ne tenê hêzek heye, çend hêz têdikoşin. Biryarek wek girtina DTP'ê wê jî Tirkiyeyê re gelek zehmetiyan derxine, Tirkiye nikare vî barî rake. Eger biryar bi vî rengî be, hêzên ku hêviya tevliheviyê dikin wê xurtir bibin, înisiyatîfê bigrin destê xwe." Altan rexne li şaredariyên DTP'ê jî girt û got ew demeke berê çûye Qoserê û tiştê wî dîtiye xerabûna navçeyê bûye: "Karê xwe baş nakin, lê hertim behsa mafên siyasî dikin. Wê kî mafê gelê ku li wan kolanan dijî, biparêze? Siyaset beriya hertiştî parastina mafê gel e."


Keça Kurd - (Wêne: Rûdaw)

*Keça Kurd li ser zaravayê kurmancî pirtûkeke etîmolojik nivîsandiye. Pirtûka ku niha li benda çapê ye, kokê peyvên windayî û yên wateya wan ne diyar in lêdikole û bi paşgir û pêşgiran têkiliya di navbera peyvan de derdixe holê.*

## Ji Keça Kurd
# Etîmolojiya zaravayê kurmancî tê

**Dortmund (Rûdaw)** – Keça Kurd piştî çend pirtûkên curbecûr niha pirtûkeke zanistî amade kiriye. Wê berê ji nav weşanên Havînbûnê pirtûkên wek ‘Zayenda Mê û Nêr’ (Gramer), ‘Pela Dawî’ (Helbest), ‘Esî û Bîlado’ (çîrok) nivîsandiye; herwiha ji bo gelek kovarên wek Pênûs û Gelawêj gotar û helbest nivîsandiye û di redaksiyona wan de cih girtiye.

Destnivîsa pirtûka wê ya nû, “Etîmolojiya zaravayê kurmancî” piştî ku pêşgotina Huseyin Hebeş bigihijê ber destê wê, ji bo çapxanê wê amade be. Keça Kurd di vê pirtûka nû de wateya peyvan lêdikole û kokê peyvan analiz dike. Ango pirtûk ji xebateke etîmolojîk pêk tê. Di derbarê naveroka pirtûka xwe de Keça Kurd wiha dibêje: “Ez di vê pirtûkê de li ser gotinên winda, gotinên ku wateya wan ne diyar e disekinim. “Peyvên kurdî bi çi awayî çêdibin, an etîmolojiya zimanê kurdî çawa ye, pirtûka min li ser van mijaran e. Van gotinan bi metodên etîmolojîk ji hev vediqetînim û kokê wan derdixim holê. Gelek peyv ji paşgir û pêşgiran pêk tên.” Li gor agahiyên ku Keça Kurd dide, di kurmancî de carna nav û navek din digihîn hev û peyvek din çêdikin. Mînak keç û mam digihîn hev, dibe keçmam. Herwiha carna rewşek, tipa navberî û navek digihîn hev, peyvek nû çêdikin. “Mînak: Pîrejin. Pîr, rewş e, tipa ‘e’ di vir de tipa navberî ye û jin jî nav e. Carna nav û rewş dibin yek. Mînak, çavsor, dilteng.”

Di pirtûka xwe de Keça Kurd gelek peyvên ku mirov di jiyana rojane de bikartîne, lê kokê wan bala mirov nakişîne, lêkolandiye. Peyvan ne li gor rêza alfabetîk, lê li gor çêbûna wan a etîmolojîk vedike. Hin gotin bi paşgiran, hin gotin bi pêşgiran wateyek din distînin. Paşgir û pêşgir jî gelek in. Mînak: Paşgira “tî”. Bi vê paşgirê çi gotin hene, ew rêz kiriye û wateya wan, kokê wan derxistiye holê. Ji bo fahmkirina mijarê Keça Kurd çend mînakan nîşanê me dide: “Bira, paşgira ‘tî’ digire, dibe birati; herwiha paşa û paşatî, kole û koletî.” Keça Kurd rexneyan li sazkirina hinek hevokan jî digire, ji ber ku ew ne li gor hevoksaziya kurdî hatine avakirin û gotinê tîne ser hevoka hevaltî: “Ji ber ku heval bi tîpeke bêdeng bidawî dibe, nabe hevaltî, dibe hevalî.”

Di rêza paşgira “îk” de jî Keça Kurd wan mînakan dide: “Kalik, malik, berxik, karik. Ev peyv ji wateyek nû digrin, hemû jî biçûk in. Lê nermik peyveke cuda ye. Di serê zarokan de ew cihê ku nerm e em jê re dibêjin nermik û ew ne ji paşgiran pêk tê, gotineke bi serê xwe ye.”

Di pirtûkê de herwiha paşgira “î”, paşgira, “ek” û gelek cureyên din hene.

Di derbarê ka gelo wê pirtûk li kîjan weşanxaneyê û li kîjan welatî bê çapkirin, Keça Kurd dibêje ku wê hêj biryar nedaye. Lê dibe ku dîsa li Berlînê bê çapkirin.

Keça Kurd tevî zaroyên xwe ev 14 sal in li bajarê Dortmundê dijî. Ew di sala 1947’an de li gundê ser Qamişloyê Xerbê Cihûyan hatiye dinyayê. Di navbera salên 1971 û 1974’an de li Zanîngeha Silêmaniyê beşa Ziman û Edebiyata Kurdî xwendiye. Du meh berê hevjînê wê Mele Ahmed jiyana xwe ji dest dabû.

# Do-Jîn dest bi weşanê kir

**Köln (Rûdaw)** - Hunermendên kurd bûn xwediyê kovareke hunerî. Bi armanca niqaşên bo pêşketina muzîka kurdî, kovara hunerî Do-Jîn, dest bi weşanê kir. Ji birêvebirên kovarê Hozan Dîno got ku ew dixwazin li Kurdistan, Ewrûpa û Tirkiyeyê bibin platforma hunermendên kurd.

Kovara Do-Jîn di meha mijdarê de li Stenbolê hejmara yekem weşand. Sernûserê kovarê Rodî Baz e. Birêvebirê kovarê Hozan Dîno ji Rûdawê re ragihand ku ew ji aliyekî ve amadekariya hejmara duyem dikin û ji aliyê din ve ew dixwazin ku kovarê li Ewrûpayê jî çap- û belavbikin. Li gor agahiyên ku Dîno dan, hejmara kovarê ya yekem ku ji 82 rûpelan pêk tê, diyarî hunermendên kurd Ahmet Kaya û Aram Tigran hatiye kirin.



Bergê hejmara yekê ya kovara Do-jîn bi wêneyê Ahmet Kaya

Hozan Dîno destnîşan kir ku “kovar wê bibe platforma muzîkê” û wiha domand: “Kovar ji gotarên bi du zimanan pêk tê. Mixabin hejmara yekem giranî bi tirkî ye. Lê em hewldidin xwe ku bi hejmara duyem ve giranî bidin kurdî. Di dema amadekariyê de em çûn cem gelek hunermendan. Di hevdîtinan de gelek kes bi şik û guman nêzîkî me bûn. Piştî me armanc û naveroka kovarê ji wan re got, gumanên wan ji holê rabûn û piştgirî dan me. Ev kovar wê bibe wek atolyeya mûzîkê. Eger ew hunermendên ku me bi wan re hevdîtinan çêkir piştgiriyê bidin, wê naveroka çanda muzîkê dewlemend bike. Muzîka kurdî hişê gelê kurd e. Divê em hertim vî hiş û dîroka kurd zindî bigrin. Ev yek peyvira hemû welatparêzan e.”

Hozan Dîno di derbarê navê gotarê de jî wiha axift: Do, wek tê zanîn di muzîkê de notaya yekem e, jîn jî tê wateya jiyanê; ango jiyana muzîkê.”

Di hejmara yekem de gotarên Ferhat Tunç, Dîno û hunermenda ciwan ya rapvan Dezz Deniz hene; herwiha bi bi hunermendên wek Xelîl Xemgîn, Seyîtxan, Ozan Dîno û gelek hunermendên din re hevdîtin hatine çêkirin.

# Roman ne pirtûka dîrokî ye


Müslüm Yücel

Di serî de roman û dîrok, lê bi awayekî gelemperî wêje û dîrok hertim mirovan aciz dike. Gotinên Nietzche yên di derbarê vê mijarê de hertim di guhên min de ne: Têkiliya wêje û dîrokê şaşîtiya sedsala 19’an e.

Di vê sedsalê de dewletên neteweî ava dibûn û ji nivîskaran dihat xwestin ku dîrokê bi awayekî wêjeyî binivsînin. Ew gotarên, nivîsên ku li gor xwestekan derdiketin holê, mirî bûn; û bi nivîsên wiha xwendevan jî wek kaxiz dihatin şewitandin. Ji ber vê jî nivîskar û keşeyên sedsala 19’an wek hev in; ji herduyan jî tê xwestin ku azan bidin.

Lê tenê yek mijara romanê heye; ew jî li gor min mirin e. Tiştên ku tên nivîsandin, hemû, di jiyan û dinyaya nivîskar a din de hatine jiyandin. Xwendevanekî zana dikare aliyê din ê nivîskar bibîne û bixwîne.

Dema em dîroka kurdan û çendîn kesayetên ji dîroka kurdan wek lehengên romanê dixwînin, em xwe wek xwendevanên zîrek dibînin û wan lehengan jî tenê karîkatûrîze dikin. Ji ber vê yekê ez wek xwendevanekî ti caran aliyê din ê nivîskarekî kurd ne dizanim, ne jî mereq dikim. Ji ber ku gelek jî wan tenê ruhê dîrokê yê mirî vedijînin û ti kes jî ji wan napirse ka hûn çi dikin? Ew li aliyekî din, ew kesên ku xwe nivîskarên romanê dihesibînin, ji ber ku çendîn kesayet û bûyerên dîrokî careke din nivîsandiye, ji aliyê gel ve heyraniyan werdigrin, pesnê wan tê dayin û ew ji xwe taybet dibînin. Wêje ne kareki wisa ye ku kesek bide pêşiya me; ew bihîstin û afirandin e. Kesên ku ji van aliyan de qels in, çav didin ser dîrokê. Li hemberê wan du aliyên demê hene: Dema paşeroj û dema niha.

Ew erdê paşerojê li gor xwesteka xwe cot dikin û diçînin; niha jî ew bi partî û siyaseta xwe ve girêda ne.

Dema ku paşeroj tê gotin, di romana kurdî de sedsala ku me li pişt xwe hişt tê bîra mirov, lê jî bilî vê hinek bîranînên dema Îsa û hinek paşveçûyînê demên din jî hene: Carna behsa Kawa tê kirin, behsa Dehaq... Dema ku behsa dema piştî Îsa jî dikin, hertim heman kes hene: Ehmede Xanî, Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran. Kesayetên dîrokî yên ku pirrî caran behsa wan tê kirin, ev in: Şêx Saîd, Seyît Riza, Qadi Muhammed, Mistefa Barzanî. Kesayetê ku di dema niha de pirr dikeve nava romanan Abdullah Öcalan e; wî ji sala 1992’an ve bala gelek nivîskarê tirk jî kişandiye, ew jî behsa wî dikin. Ew nivîskarên tirk, çi çepgir bin, çi rastgir bin, îmaja Öcalan hertim neyênî nîşan didin. Öcalanê ku kurd dinivsînin jî an li ezmanan li cem Xwedê ye, an jî heft qat di bin erdê de ye; Öcalanê wek însan tuneye.

Romannûsê dema niha jî bi wêjeyê tenê propagandaya partiya xwe dike. Lê divê çavkaniya nivîskarekî hertim şermên wî bin. Kesê ku şermên xwe veşêre/wan tune bihesibîne û şermên kes û gelên din hertim di ber çavan de bibîne, ew kes ne nivîsker e; lê tenê nivîskarê vê demê ye, yê pere ye. Ev nivîskar romanê nanivîsîne; di serê wî de fikirek heye, dixwaze vî fikrê xwe bi rêya wêjeyê belav bike. Di vir de mantiqa ku ew gelek caran bikartîne bin doxînê ye. Hertim dixwaze fikrên dijber vala derxîne, mînak lehengeke jin diafirîne, ev jin piştê gelek êş û bûyeran dibe fahîşe; mînak, lehengekî mêr diafirîne; ev mêr gelek serpêhatiyan şûnde dikeve girtîgehê, diçe serê çiya, tê guhertin, paşiyê de dibe jinfiroş… Mirov dikare mînakan dirêj bike. Nivîskarê hişyar dikare van tiştan di bin navê realîte û cudahiyê de bi xwendevan bide qebûlkirin; bi vê re dikare bibe miroveki populer jî. Di rastiyê de, ew tîpên ku tên afirandin ne tîp in; belavokên ku pê dixwazin bi dewletê re hevkariyê bikin; û encamên van belavokan jî di dawiyê de tên standin. Hûn mînak dixwazin? Ez naxwazim navan bidim û ji xwe re dost û dijmin çêbikim. Gelek kes hene ku tîpên kurd ên neyênî diafirînin û pê alîkariya dewletê ya maddî û manevî distînin. Ji aliyê din ve kesên ku wiha tîpên kurd ên negatîf diafirînin jî medyaya tirk û gelek weşanxaneyan jî alîkariyê werdigrin. Ev rastiyek e; herkes bila li derûdora xwe binêre, wê bibîne.

Dilê mirov di xwezayê de xezîneya herî giring û dewlemend e. Nivîskarekî ku karibe vî dilî bibîne, dikare hertiştî bibîne. Hertişt dema ku mirov karibe dilê xwe bibîne, dest pê dike. Kesê ku karibe dilê xwe bibîne, dikare dilê kesên din jî bibîne. Kesê ku nikaribe dilê xwe bibîne, pirr bi hêsanî dikare dilê herkesî bişkêne. Paşê ji xwe aciz dike û dibêje çima min wek nivîskarekî nabînin? Divê ez jê re wiha bêjim: Tu ne li dû romanê bûyî, te dixwast biserkevî û te ew serkeftin bi dest xist; gelo serkeftina ku tu fahm dikî çi ye? Lê nivîskarên ku ez wan nas dikim, hemû têk çûne.

Dema durûtiyê qediya; ji aliyekî ve di bankayan de wê pereyên te hebe, ji aliyê din ve tu dibêjî ez jî bo kurdan êşan dikşînim; ji aliyekî ve di serê te de lehengên Dostoyevskî hene, ji aliyê din ve tu tîpên kurd ên negatîf diafirînî û bikevî çavê dewletê. Ewqas jî nabe!

Em hatin dawî: Dîrok, wêjeyê qels dike; milên wê dişkêne û wê dike wek koleyeke çok şikandî. Dema ku wêje bitirse, nivîskar jî hestên xwe winda dike. Dîrok, masûmiyeta xwe ji cografyayê digire; di nava vê masûmiyetê de çem weke klaman diherikin, mirovên oldar dibin pispor; lehengên neteweî dibin wek îdolên îdeolojîk, ev hinek jî pêşve biçe, lehengên aristokrat derdikevin. Di dîrokê de tiştê ku nayê qebûlkirin ew e ku pêsîra şîr di devê nivîskarên nezan de ye. Hingivê pêsîrê, gotina welat e. Welat gotineke bi sihêr e, sergirtî ye, bêtir mirovên belengaz jê bawer dikin; mirovên belengaz difikirin ku dema welatekî wan hebe, wê pêşeroja wan jî hebe. Lê ez baş dizanim ku di sedsalên dawîn de tiştê ku jê re welat tê gotin, hingivê kewan e; ti kes nikare vê hingivê tehm bike, ew malê zumreyekî ye.

Mehmet Atlı:

# Dengê mûzîka bajarî û tenêtiyê!

*Atlı, muzîka xwe wek popê bi nav dike. Popa kurdî ya bajariyan. Lê ew mûzîkê wek hunerek gelemperî dibîne û dixwaze ku herkes wî guhdar bikê. Atlı, guhdarên kurd ên li Ewrûpayê jî li gor ên welat hinek 'girti' dibîne.*



*Xwediyê mûzîka lêgerînê û xwenaskirinê Mehmet Atlı dibêje ku herçiqas ew bajarî be û bi tenê bijî jî, aliyekî wî gund e, deşt e, çiya ye...*

**Stenbol (Rûdaw)** - Dema mirov bêje Mehmet Atlı, helbet mûzîka bajarvaniyê, tenêtî, evîn û keder tê bîra mirov. Mûzîk û stranên wî li ser devê xemdar û evîndaran kêm nabin. Gelek rejîsor ji bo mûzîka filmên xwe pêşî li deriyê wî dixin. Ew bi afirinerî û dilnizmiya xwe ve di nava mûzîkjenên kurdan de cihekî taybet digire. Em zêde gotinê dirêj nekin, ji ber ku Mehmet Atlı di nav ewqas kar û barê xwe de em neşikandin û li ser huner û jiyana xwe agahiyên taybet dan Rûdawê.

***Mehmet Atlı di jiyana xwe ya taybet de, di piştperdeya mûzîkê de hunermendekî çawa ye?***

Ji xwendinê hez dikim. Pirtûk, rojname, helbest, internet, çi hebe. Min perwerda mimariyê dit. Di heftê de pênc rojan ser karê mimariyê dixebitim. Min ser dîroka mimariyê master çêkir. Bi vê mijarê jî mijul im. Keça min, Zinê, çar salî ye, bi wê re wext derbas dikim. Hevalên minê şanoger, sinemager, niviskar û müzikjen hene, bi wan re sohbet dikim. Yek caran diçim qonseran an jî li cîhên kevn û dîrokî digerim.

***Strana ku te pêşîn nivîsandiye û stirî kîjan e? Çima?***

Strana pêşîn ku min nivisandiye yeka zazakî ye û qala trajediya şer dike, bi navê "No Çi Halo." Ez bi dayika xwe re zazaki diaxifim. Zazakiya min ji kurmancîya min baştir e. Besteya yekemîn ku min çêkiriye "bejnê" melodiyeki bi coş e, li salên ciwani! Strana ku pêşin min şirove kiriye stranekî gelêrî ye: Lo Şivano, bilûrvano... Me dixwest bi kaniyên geleri ve tekiliyên dewlemend ava bikin. Em li ser stranên gelêri sekinîn. Ev hersê, albuma Koma Dengê Azadî di albuma "Welatê min" de hene.

***Te heta niha tarîfeke net ji hunera mûzîka xwe re peyda kiriye gelo? An tu hê jî di nava lêgerînê de yî...***

Li gor fikra min, tarîfkirin ne karê min e, ev karê mûzîkolog û guhdaran e. Lê ez karim bibêjim stîla mûzîka min pop e. Lê popekî çawa, ez jî lê digerim. Mûzîka min, wekî te gotî, mûzîka lêgerinê, xwenaskirinê ye..

***Tu wekî Ciwan Hacoyê duyemîn têyî binavkirin, tu ji vê acizî gelo?***

Haco hunermendekî mezin e, ne tenê ji bo min ji bo gelek mûzîkjenên ciwan re jî bûye pêşeng, ez serbilind u bextewar im ku navê min û navê wî tên cem hev. Lê disa ji aciz im, ji ber ku her hunermend dixwaze bi xebat u rengê xwe bê nas kirin, bê hez kirin.

***Vê pela dawî gelek stranbêjên tirk stranên kurdî xwendin, tu vê çawa dibînî?***

Baş e, bila bixwînin, dereng man. Lê ne ji bo şov, ji bo biratî, ji bo hevûdu fahmkirin û hezkirinê. Mesela herî giring mafê perwerda zimanê dayikê ye.

***Em dizanin ku piranî întellektûelên kurd gohê xwe didin mûzîka te. Tu vê yekê çawa dinirxînî?***

Xwezî wisa be. Ku ev tespît rast be gerek ev pirs ji wan bê pirsîn.

***Li gorî te wêje çi qasî dikare yarmetiya mûzîka te bike? Têkiliya mûzîk û wêjeyê çi ye?***

Wêje, peykel, wêne, dîmen, mûzîk an jî drama, van tiştan hewqas jî ne ji hev dûr in, enstrûmanên wan ji hev cuda be jî, prensibên wan nêzikê hev in. Di navbera wan de sinorên sist û ne zelal hene. Li gor min, mûzîk dengê helbestê bilind dike. Helbest rengê xwe, rihê xwe dide mûzîkê. Wêje kaniyekî gelek mezin e û ne tenê mûzîkjen gerek herkes ji wê vexwe.

***Çima mûzîka bajarî û tenêtiyê? Belkî kesên gundî û rênçber jî bixwazin mûzîka te guhdarî bikin...***

Ji ber ku ez bajarî me û tenê me. Tenêtî rastiya mirovê modern e. Lê her çiqas ez qala kesên bajari û tenêtîya wan bikim jî mûzîk ji bo herkesî ye. Hêla din, ez karim bêjim aliyekî min gund e, deşt û çiya ne, çem û kanî ne jî...

***Rola NÇM'ê (Navenda Çanda Mezopotamya) di avakirina mûzîka modern de çawa bû?***

Wî rolêki girîng list, bi taybetî di salên 90'an de. Ciwanên kurd li wê derê li hev civîyan, zarokên ku li metropolê mezin dibûn nasnameya xwe li wê derê nas kirin. Lê iro divê NÇM mîsyon û rola xwe biguherîne. Ji ber ku iro gelek TV, radyo û enstrûmanên din ava bûne û lazim e ku şikl û metoda çêkirina hunerê xwe nûh bike...

***Êdî niha bûye adet, gelek kes ji gotinên kurdî û tirkî stranan çêdikin? Tu li ser vê çi dibêjî?***

Bi kurdî stran çêkirin û gotin meseleya rumetê ye, meseleya jiyanê ye. Wekî din ji bo min bi kîjan ziman stran tê gotin ne girîng e. Bawerîya min bi enternasyonalizmê heye.

***Tu li ser TRT 6'ê çi difikirî? Dema mûzîk û stranên te di TRT 6ê de derdikevin, tu ji xwe re çi difikirî?***

Heya gavên din neyên avêtin ev gav bi tenê zede ne muhime. Gelek pirsên Kurdan hene, gelek pirsên çand û hunera me û gelek astengiyên mezin li ber azadiya Kurdan hene. Lê ji bo destpekê TRT 6 ji gavek e. Ez bi xwe ne çûm TRT 6 û ne tenê TRT6 bi giştî ez TV temaşe nakim.

***Ku sibe ciwanekî/e kurd dest bi mûzîkjeniyê bike, gelo tu yê bikaribî çi şîretan lê bikî?***

Şîreta min ew e ku bi mejîyekî serbixwe, bi dilekî azad bixebitin. Tiştê herî giring ne aborî, ne perwerdehi û ne jî qabîlîyeta xwedê daye nîn e. Tiştê herî girîng ji dil ve bawer bûne, samîmîyeta mirov e. Kesên ku bi hunerê ve mijûl dibin mecbur in ji gelek kaniyan xwe xwedî bikin, bixwînin, guhdarî bikin, temaşe bikin û bifikirin. Pratîk jî dû re tê.

***Kesên biyanî çi eleqeyê nîşanî mûzîka te dikin? Reaksiyona ku nîşanî te dikin çi ye?***

Yek caran tên qonseran, ciwanên kurd dixwazin mûzîka me nîşanî wan bidin. Bi rastî diecibînin, meraq dikin. Lazim e ku em hinek projeyên nû bi rê xin; derfetên xwe ne tenê ji bo mûzîk ji bo nasandina çand, dîrok, huner û folklora me qampanyayek mezin çêbikin. Bawer bikin, di jiyana rojane de xebatên bi vî awayi ji çek, ji şer zedetir tesîr dikin.

***Tu seviye û profîla gohdarên xwe yên li Ewropa û Bakurê Kurdistanê çawa dibînî. Di konserên xwe de tu vê ferqê nas dikî gelo?***

Dikarim bêjim gûhdarên ku li Ewropayê ne piçekî din muhafazakar in, dibe ku ji hesreta welat wisa be.

Berhemeke nû ji Weşanxaneya Pencînarê:

## GULBIJÊR

### Gotarên Nêçîrvan Berzanî




**Köln (Rûdaw)** - Pirtûka bi navê Gulbijêr ku ji aliyê nivîskar Nasrat Hacî (Nasrat Hecî Taha) ve hatiye amadekirin, di nava refên Pencînar-Weşanxaneya Çanda Kurdî hat weşandin. Pirtûk bi kurmancû û bi tîpên latînî hatiye nivîsandin.

Pirtûk ji bilî gotara damezirandina Hikûmeta Kurdistanê ya pêşî, 21 gotarên Serokwezîrê Kurdistanê Nêçîrvan Berzanî ne ku di demên cuda de hatine pêşkêşkirin. Her yek ji wan gotaran li pêşber kesayetiyên girîng, bi naverokeke dagirtî, bi zimanekî nerm, bi peyv û bêjeyên balkêş, bi kêş û nikleke rewan û bi vîn û tîneke germ hatiye pêşkêşkirin. Herwiha her yek ji van gotaran, balkêşana pir tiştên girîng kiriye ku ji bo mirovatî û demokrasiyê bûye rêveker û ji bo nivşên pêşerojê yên kurd û Kurdistanê jî rênîşander in.

Giringiya herî mezin a van gotaran ji bo kurdên Bakûr ev e ku ew bi zimanekî zelal û bi tîpên latînî hatine weşandin. Ji xwe pêşgotina Nasrat Hacî bi sernavê 'Çima Ev Pirtûk?' zêdetir bala mirov dikişîne ser naveroka wê. Herwiha pêşgotina Dara Bilek jî xweşiyeke zêdetir daxistiye hunera wê.

Weşandina vê berhemê ji aliyê weşanxaneya me PENCÎNAR-Weşanxaneya Çanda Kurdî ve dilxweşiyeke zêde ye. Bi hêviya ku ev pirtûk sûd bigehîne Zimanê Kurdî û pêşerojeke aram ji bo neteweyê kurd raxîne, herwiha li Pirtûkxaneya Kurdistanê jî pîroz be.

# "Vegotin hunandina çîrokê ye"

*"Di edebiyata kurdî de dive pirsa 'çi nivîsiye?' cihê xwe bi pirsa 'çawa nivîsiye?' hêdî hêdî biguherîne. Ez bawerim eger têgiha "çawa?" bêtir bikeve rojeva edebiyata kurdî, emê wê demê bikaribin li ser berhemên ku dibin bersiva civatê jî biaxifin."*



**RÛKEN ÖZMEN**

**Köln (Rûdaw)** - Çîrok bejna me bi rabirdûwê re dîpîve, temenê me di qermîçonkên ruyê me re dinijinîne û me bi kirinê me di neynika jiyanê de rûbirû dike. Pira navbera çûyîn û hatinê ava dike û me bi qifle bi qifle di ser re derbas dike. Ew berhevkara şopên me ye û ji bo me vedibêje da ku serwextê pêşe demê bike. Ka em ji Lorîn Doğan bipirsin, bila ew çîroka çîrokê ji me re rave bike.

***Sedema ku hûn dest bavêjin pênûsê çi bû?***

Bi baweriya min tiştek bi tena serê xwe têrî nake ku mirov dest bavêje pênûsê. Zarokatiya mirov, çîrok û kêliyên ku di rihê mirov de digihijin hevdu, mîrateyên bajaran ên ku mirov bi bêhna wan mezin dibe, têdigihije û bi wan re rastî xwe tê; kêferat û nakokiyên ku bela xwe ji rihê mirov venakin; xwendin, çavdêrî, şikestin û tirsên ku tevlî kêliyên jiyana mirov dibin… Belkî jî dilopên van hemûyan li derekê digihijin hevdu û di dema ku êdî hevok nema karibin di rihê mirov de xwe veşêrin, xwe vediguhezin û nivîskî derdikevin holê.

***Hûn çîrokê çawa destnîşan dikin û çîrokê ji bo kê dinivîsin?***

Çîrok li gorî min deqên kêliyên jiyanê ne. Deqên jiyanê yên herî xedar, yên herî tevlihev, yên herî bi kêferat, yên herî biguneh û yên herî bêguneh in jî ji bo min. Deqên jiyanê ne ku ez rastî wan têm, ez li wan dialiqim, an jî ku di hişê min de, di rihê min de ava dibin, ku ez zû bi zû nikarim xwe ji wan xelas bikim. Û heta ku ez di nav hibra pênûsê de wan deqan neherikînim, rihê min aram nabe. Helbet her nivîskar bi berhemên xwe re girseya xwendekarê xwe jî diafirîne. Lê dema nivîskar dinivîsîne, nafikire ka gelo ji bo kîjan netewî, kîjan cinsî, an jî kîjan temenî binivîsînim. Berhemên ku ji rihê nivîskar azad dibin, ber bi rihê xwendekaran ve diçin û rihê xwendekaran jî bi rêya berheman re nêzî rih û hevokên nivîskar dibin.

***Desthilatdariya civaka kurd mêrane ye, mêr hest û têbiniyên jinê dinivîsin. Jin gihiştine wê asta ku êdî ew bi xwe ramana xwe binivîse gelo?***

Gelo mêrên kurd ên nivîskar çiqasî hest û têbiniyê jinê dinivîsînin, ew jî mijara minaqeşê ye. Ji xwe em ji nivîskarekî mêr re nikarin bibêjin 'çima ti hestên jinê nanivîsînî' û ji nivîskareke jin re jî em nikarin bibêjin 'çima ti hestên mêr nanivîsînî.' Ev tercîhek e, an jî kîjan hest di rihê nivîskar de bigerin, wê dinivîsîne. Di nav civata kurd de, jin gihiştine wê radeyê ku hest û ramanên xwe bikin para pênûsê, bikin para hunerê. Lê mixabin gelek caran tirs, pirs û sînorên ku rih û hişê jinê li wan dialiqe, pênûsê dilikumînin û nahêlin ku ev yek bi temametî pêk were.

***Berhemên wêjeyî yê di vê serdema me de çiqasî dibine bersiva civakê û civak çiqasî li berhemên xwe xwedî derdikeve û dixwîne?***

Rêwîtiya wêjeyê an jî hunerê ya bi di- civatekê re, rêwîtiyeke dûvedirêj e. Di vê rêwîtiyê de hinek berhem bêdeng dimînin, hinek berhem civatê tevlihev dikin û ji bo vê yekê jî pêwistî bi şert û ramanên azad heye. Lê helbet ev ji bo nivîskarên kurd êdî nebê wateyek ku tenê ev mijar bikeve rojevê û bêyî ku em li ser berheman biaxifin, tenê em li ser zext û zorên ku li ser zimanê kurdî pêk hatine biaxifin. Di edebitaya kurdî de dive pirsa 'çi nivîsiye?' cihê xwe bi pirsa 'çawa nivîsiye?' hêdî hêdî biguherîne. Ez bawerim eger têgiha "çawa?" bêhtir bikeve rojeva edebiyata kurdî, emê wê demê bikaribin li ser berhemên ku dibin bersiva civatê jî, biaxifin.

### Lorîn Doğan kî ye?

*Di sala 1975'an de li Gundikê Şikro ku girêdayî Nisêbînê ye, hatiye dinyayê. Dibistana seretayî, navîn û lîse li Nisêbînê xwendiye. Paşê li Zanîngeha Dicleyê beşa biyolojî qedand û niha li Amede dijî. Pirtukek wê ya çîrokan bi navê "Kirasê Teng" di nav weşanên Avesta de derket.*

# Çopî ji kaktûsan hezdike!

*Hunermanda kurd Çopî hem hunera mûzîkê didomîne, hem zanîngehê dixwîne. Wê kariyera hunera xwe di Med Tv'de dest pê kir, niha bi îngilîzî jî distire. Ew ji gulan na, lê ji kaktusan hezdike.*



*Çopî*

**AWAZ ELÎ**

**Hollanda (Rûdaw)** – Eger derfeta we ya hevditinê çêbû, hûn henekan jê re nebêjin, ji ber ku kêfa wê ji henekan re nayê. Bi taybetî dema ku hin kes beriya henekan dibêjin 'kuro pê bikene.' Herwiha ji wê pirs nekin ka ew dikare tiştekî li ser xwe bêje û gulan jî nedinê! "Kêfa min ji gulan re nayê. Zêde hestyar in, zêde rengîn in û tim dimirin, ji ber ku ez piraniya demê li derve me. Kaktûs bidin min çêtir e! Bi ya min ew bihêztirîn giya ne!" Lê eger tu ezmanên bi ewir nîşanî wê bidî û bêjî wê niha bibe gûrmînî, tu yê wê kêfxweş bikî. Ji ber ku ew ji brûskan hez dike. "Tiştekî bêhempa ye. Zimanê mirov nagere ku bi gotinan şirove bike." Lê belê tiştê ku kêfa wê bêhtir tîne jî strangotin e. Ji ber wê me çend pirs di derbarê kar û albûma wê ya sêyem kirin.

**Mîkrofonên leyistokî**

Çopî dibêje hezkirina wê ya stranbêjiye di dibistana seretayî de dest pê kir, gava di sinifan de stranên zarokan û yên fîlmên karton dihatin gotin. "Li kanên pêleyîstokên zarokan mîkrofonên ku dengekê melûl jê dihat hebûn. Min jî çû yek ji wan kirî. Êdî min çi diviya? Ez di navbera çar dîwaran de bûm, lê belê min xeyal dikir ku ez stran dibêjim û girseyeke bi hezaran, ango wiha pir bûn ku min nedikiyara wan bihejmêrim, guhdariya min dikin." Çopî herwiha dibêje ku problemên wê ti car çênebûne, dema derdikevê pêşberî girseya gel. "Çiqas mezintir bûya, ji bo min baştir dibû.

**Med TV**

Piştî ku derûdora wê pê dihese ku Çopî çiqas jêhatî ye, hunermend Cewad Merwanî jî digihêje heman encamê û Çopî bi Werya Ahmed dide naskirin. Hunermend Çopî Fetah dibêje ku paşê ew di 16 saliya xwe de cara ewil beşdarî bernameya Barzan Şazîwar a bi navê "şaneşîn" di Med TV dibe û kariyera wê dest pê dike. "Heyecana di dilê min de gihiştibû wê astê ku min nedizanî min çi xwaribû wê rojê, min ê çawa bi awayekî serkeftî bersiva pirsên kak Barzan bidaya û beramber çar kamera ji dikê nekevim û karê xwe baş bikim." Piştî tomarkirina bernameyê barê ser stûyê Çopî yê ji heyecanê çêbûyî yekser dikeve û ew diçe kebabxaneyekê û zikê xwe baş têr bike. "Nanekî basît ku kebab di nav de, digel sos, di gaveke wusa de wek xweştirîn xwarina cihanê tê bîra mirov. Û bêguman ku Pepsî jî hebe!"

**'Ezê dîsa bi ingilîzî bêjim'**

Çopî qala evîniya xwe ya ji bo strangotina bi ingilîzî dike û dibêje ku bersivên gelekî erênî ji bo strana wê ya pêşîn a ingilîzî My Homeland (Niştîmana min) hatin. "Ji şiroveyên guhdaran ez derdixim ku ew dixwazin ez dîsa bi ingilîzî bêjim. Hêvîdar im kêfxweş bin, ji ber ku misoger e ku ez ê dîsa bi ingilîzî bêjim. Ji xwe ji gava ku ez dikarim bistrim, ez bi ingilîzî jî stranan dibêjim." Tiştê ku gelek kes nizanin ew e ku Çopî xwedî jiyaneke awarte ye, li gor gelek hunermendên din. Ji ber ku ew li gel hunera xwe dixwîne jî û pêşbînî dike ku di havîna bê de dîploma xwe ya di warê pedagojîyê bi dest bixe.

**Huner girîng e, lê xwendin jî**

Çopî di xwendina xwe de pir bi îsrar e û ji axaftina wê diyar dibe ku ew tiştên ku ji zanîngehe fêr dibe diguncîne ser rewşa Kurdistanê: "Mixabin li Kurdistanê eleqe kêm e ji bo gihandina zarokan. Ciwanên ku problemên wan ên libatî hene pir in û ji wan re planeke kesî, parastin û geşepêdan pêdivî ye."

Dema ku em qala hevaltiyê dikin, hunermenda kurd dibêje, çawa ku ji bo herkesî hevalên rasteqîn bi yek dest tên hejmartin, ji bo wê jî rewş wisa ye. "Kêfxweş im ji ber dirustbûn û piştevaniya hevalan ku ji min re tê."

Çopî herwiha qala dewlemendiya çanda kurdî jî dike û dibêje ku ew dixwaze gelek aliyên baş ên vê çandê fêrî zarokên xwe bike. "Rêz, vekirîbûn, mêvanperwerî, mîzaha kurdî, xwîngermî û alîkarheziya şirîn, ez gelek caran di nav kurdan de dibînim." Herwiha Çopî dixwaze zarokên wê baş baş kurdî bizanin: "Ziman kilîta gelek tiştan e. Bi taybetî di navbera zarok û civaka kurd de."




*Konferans di salona konferansê ya Victor Hugo li Parlamena Fransayê li dar ket* *(Wêne: Rûdaw © Enstîtuya kurdî ya Parîsê)*

## Li Parîsê Konferansa Komkujiya Dêrsimê

# "Dêrsimî çawa dikarin jenosîdê ji bîr bikin?"

**ERGÎN OPERGÎN**

**Paris (Rûdaw)** - Roja 27'ê mijdarê bi organizasyona Enstîtûya Kurdî ya Parîsê, li Parlemana Fransayê, di derbarê komkujiya Dêrsimê (1936-1938) de konferanseke yek roji hat lidarxistin. Akademisyen, dîrokzan û siyasetmedarên ku beşdarê konferansê bûn, bûyerên ku li Dêrsimê pêkhatine nirxandin, wek komkujî binavkirin û avakirina bendavan li Dêrsimê û êrişên li bajarên Tirkiyeyê li dijî kurdan wek berdewamiya vê siyasetê binav kirin.

Konferansa ku di bin sê danişînan de bi rê ve çû, di danişîna yekem de hewl da rûdanên Dêrsimê. Dr. Uğur Ümit Üngör di axaftina xwe de hewl da paraleliya di navbera rola Jön-Tirkan di jenosîda ermeniyan û rola wan a di komkujiya Dêrsimê de, tespîd bike.

Dû re, lêkolînerê dîroka nêzîk Mehmet Bayrak, behsa kompleksa dewletê ya li dijî pirsgirêka Dêrsimê kir û got ku ji sala 80'yan heta niha li ser Dêrsimê çi nivîsandibe ketiye ber dadgehan. Bayrak ev yek bi dijminatiya dewletê ya li dijî nasnameya Dêrsimê ya qizilbaş-kurd ve girêda. "Îtirafa ku Onur Öymen di parlamenê de kir, firsendeke giring da hemû kesî ku careke din pozisyonên xwe bixine ber pirs û lêkdanan. Komkujiya Dêrsimê konsepteke pirr fireh bû ku ji sala 1925'an bi 'Şark Islahat Planı' bingeha wê hatibû danîn." Bayrak behsa rola Atatürk ya di wê komkujiyê de kir û wiha got: "Elewî xwe dixapînin. Dibêjin haya Atatürk ji wê operasyonê nebû. Nexêr, ne wisa ye, ji ber ku neh roj berî mirina xwe, Atatürk gotarek li ser navê xwe dabû xwendin ku tê de digot ku bi xêra wê operasyonê (komkujiya Dêrsimê) hemû komên rêbir û rêgiran ji navê hatibûne rakirin."

Danişîna duyem ku ji bo niqaşa "Gelo Dêrsim jenosîd bû?" hatibû terxankirin, bi kronolojiyeke bûyerên Dêrsimê destpê kir ku Dr. Hans Lukas Keiser pêşkêş kir. Navborî got ku gava mirov di çarçoveya dîroki de li komkujiyê dinêre, eşkere dibe ku dewletê ev komkujî bi serê gelê herêmê de aniye. Erdoğan Aydın jî bal kişand ser wê yekê ku di serî de ti serhildanek çênebûbû; "Dewletê di çarçova 'birina medeniyetê' de ew êriş birine ser herêmê. Lê belê dewlet dixwaze wê wekî serhildan nîşan bide da ku kiryarên xwe meşrû nîşan bide; herwiha, sosyalist jî heman xetayê dikin û ew jî ji bo dagirtina paşxaneya têkoşîna xwe wê wekî serhildan nîşan didin."

Danişîna piştî nîvro bi moderatoriya nivîskar û bisporê jeopolitîkê Gerard Chailand ve, bi nîşandana vîdyoya şahidiya kevne-serokwezîrê Tirkiyeyê Îhsan Sabri Çaglayangil dest pê kir ku tê de navborî îtiraf dike ka çawa komên mirovan di şkeftan de bi çekên kîmyewî kuştibûn. Prof. Dr. Mithat Sincar jî di dewama wê niqaşê de got ku Dewleta Tirk, bi avakirina komarê re dest avêtiye muhendisiya birî û bireke fermî avakiriye. "Tiştên ku bi kêrî dewletê nayên didin jibîrkirin. Lê belê di rastiya rûdanên civakî de birkirin nîne; bi tenê bo heyamekê têne veşartin û bi careke din ew rûdan dîsa derdikevin holê. Axaftina Onur Öymen jî wisa bû û bersiva serokwezîr Erdogan jî gelek eşkere bû." Sincar got ku wextê wê hatiye ku dewlet hesabê sûcên xwe bide, lê van bûyeran çawa bandoreke travmatîk li mexdûran kiribe herwiha travmayeke bi şêweyeke din aniye serê hemû civaka Tirkiyeyê jî. Û îro eger li Izmîrê û Bayramiçê li dijî kurdan êriş pêk bên, ji ber bandorên travmatîk ên wê prosesa pirs û muhakemeyê ye."

Beriya dawiya danişînê vîdyoya axaftina Dr. Îsmail Beşikçi jî hat pêşkêşkirin û Beşikçi, Dêrsim bi jenosîdê wesf kir û got, "Ez fam nakim, 90 hezar Dêrsimî hatin kuştin, Dêrsimî çawa dikarin wiha bi hêsanî ji bîr bikin."

# Rewşa hikûmetê li Almanyayê




Li Almanyayê hevpeymaniya Demokratên Xiristiyan (CDU/CSU) û Liberalan (FDP) van rojan di tengasiyên mezin da ye. Di dawiya hilbijartinan de li ser programa hikûmetê gelek niqaş çêbûn. FDP bi pirranî nikarî daxwazên xwe bide qebûlkirin. Ji bo vê, programa hevpeymaniya nû kêm guhertin bi xwe ra anî. Di gelek beşên siyasetê de, programa hevpeymaniya berê, ango ya CDU/CSU û Sosyal Demokratan (SPD), tê berdewam kirin. Xwuya bû ku pirsgirêkên aborî û civakî nikarin bi destê hevpeymaniya nû di demek kurt de bên çareserkirin. Herdu terefên hevpeymaniyê nêzîkî sê mehan de gelek car cûdatiyên xwe pêşxistin, ku bi vî awayî hevkariya hevpeymaniyê hin jî zor dibe.

Di destpêka wezîfeyê de, hikûmeta CDU/CSU û FDP kete krîzeka niqaşên li ser bûyereke Afxanistanê, roja 4'ê Îlonê. Generalekî alman fermana erişekê bombekirinê dabû û bi dehan kesên sivîl hatibûn kuştin. Sûcê wî generalî hat tespîtkirin û wezîre parastinê yê berê Franz Josef Jung, ku di koalîsyona nû de wezîrê kar û xebatê bû, istifa kir. Ji bo hikûmeta nû, istifaya wezîr Jung him bû sebeba krîzekê û him jî niqaşek li ser leşkerên alman li Afxanistan vekir.

Nakokiyên di navbena hikûmetê de li ser gelek mijarên din jî didomin. Minakek; FDP berî hilbijartinan hinek pêşniyar li ser sîstema bacê kiribû. Lê di nav hevpeymaniyê de kêmtirkirina bacan nehat qebûlkirin, ji ber ku budce û deynên dewletê rê nadê ku sala 2010'an de reformek bacê pêk bê.

Serokwezîr Angela Merkel ragihand ku di sala 2010'an de divê paketek pêşvebirina aboriyê çêbibe. Armanca vê paketê ewe ku dewlet mesrefên bo konjoktûr (investisyonan) bike û krîza aborî ji holê rabe. Ev pilana hikûmetê jî kete tengasiyê. Hinek eyaletên Almanya paketa aborî qebûl nakin û naxwazin di meclisa eyaletan de piştgiriya wê bikin. Bê alîkariya eyaletên ku bi destê CDU/CSU tên îdarekirin, hikûmet nikare paketa aborî pêk bîne.

Mijarek giring ya programa hikûmetê li ser alîkariya malbatên bi zarok bû. Kesên ku zarokên wan biçûk in, divê ji dewletê pere bistînin û ne hewceyê karê bi maaş bin. CDU/CSU bona vê her mehekê miqdarek pere wek maaş pêşniyar dikê. Lê FDP li dijî dayîna pere ye û daxwaza dayîna qerteka ku bi wê tiştan bikirin kire rojevê. Herdu pêşniyar ji hev gelek cûda ne û dibin sedema lihevnehatina di hindûrê hevpeymaniyê de.

Reforma tenduristiyê ya hevpeymaniya Xiristiyanên Demokrat û Liberalan heta niha eşkere nebû. Mesrefên tendurustiyê ji bo kesên ku hindik qezenc dijîn, bareki giran e. Ji aliyê din, sazgeh û sigortayên sosyal jî di krîzeke malî da ne. Reformek di warê tenduristî de pêwîst e. Xûya ye ku hikûmet hem bê konsepte û hem jî nikare problemên malî ji holê rake. Krîza aborî û pirrbûna kesên bê kar di salên pêş de wê mesrefên sîgorteyên sosyal mezintir bike. Finansekirina vebûna budceya sosyal-sîgortayan, pirsgirêkeke herî mezin e jî bo maliye ya dewletê. Ji bo vê yekê, hikûmet pêwîstiya reformekê dibîne, lê di navbera xwe da hevditinek tûne ye.

Berî hilbijartinên 27'ê ilonê, CDU/CSU û FDP sozên mezin dabûn hilbijêran. Herdu partiyan anîn ziman ku di hevpeymaniya wan da çareserkirina pirsgirêkên aborî û civakî mimkûn e. Daxwaz û pêşniyarên van partiyan jî nêzîkê hev bûn. Pirraniya hilbijêran û gelek şirketên şexsî bawer bûn ku hevpeymaniya CDU/CSU û FDP alternatîfeke baş e û dikare gavên nû bavêje. Ev hêvî di destpêka hikûmeta hevpeymaniyê de vala derket.

Program û şertên hikûmetê bo çareserkirina pirsgirêkên rojevê kêm in û dibin sedema dilşikestina hilbijêran. Gora lêkolînên van rojên dawî, pirraniya hilbijêran êdî hevpeymaniya CDU/CSU û FDP wek tercîh nabînin. Ew jî mesajek bo hikûmeta hevpeyman e ku gavên mezin bavêje û pirsgirêkên aborî û civakî çareser bike. Di vir de muxalefeta çep bi rexne û pêşniyarên xwe mimkûn e ku zorê bide hikûmetê û protestoyên civakê bîne ziman. Bo hikûmeta Angela Merkel rojên pêş divê bi zehmet û tengasiyan tijî be.

# Kurdên Brûkselê komela xwe ji nû ve avakirin

**GÜLİSTAN DUKEN**

**Brûksel (Rûdaw)** - Beriya sê salan komela Brûkselê ji aliyê tirkên nijadperest ve hatibû şewitandin. Piştî sê salan kurdên Brûkselê bi piştgiriya hev komela xwe ji nû ve avakirin. Di nav xebatên komeleyê de çalakiyên cûrbecûr yên weke folklor, kursên muzîkê û spore jî cih digrin. Li ser navê KONKURD'e Nizamettin Toğuç jî axaftinek kir u got ku kurd bi piştgiriya hev li ser piyan in: "Ez nabêjim komela me, ez dibêjim me mala xwe ji nû ve ava kir" Toğuç jinûvevekirina komeleyê pîroz kir û got: "mala me, mala me kurdan, li me û li gelê kurd pîroz be!"



*Nizamettin Toğuç di vekirna komeleyê de bal kişan ser rewşa Abdullah Öcalan ji.* *(Wêne: Rûdaw)*

# Heqmayina biyaniyan tê direjkirin

**Bremen** – Konferansa Wezîrên Navxwe "Innenministerkonferenz - IMK" li ser dirêjkirina mafê mayinê (Bleiberecht) yê biyaniyan li hev kir. Li gorî lihevhatinê 31 hezar biyanî nayên dersînorkirin û mafê wan yê mayinê du salan tê dirêjkirin.

Mafê mayinê ji bo biyaniyên bi statuya "Duldung" heta dawiya sala 2011'an hat dirêjkirin. Ev lihevhatin di encama guftûgoyên wezîrên navxwe yên herêmên Almanyayê di 4'ê kanûnê li Bremenê derket. Kesên ku heta niha xwedî statuya "Aufenthalt auf Probe" bûn, bi vê lihevhatinê şanseki din wergirtin ku mafê mayîna bêsînor li Almanyayê bi dest bixin.

Bi vê lihevhatina dawî ya Konferansa Wezîrên Navxwe biryareke sala 2007'an tê dirêjkirin. Di 2007'an de hikûmeta Almanyayê moleta du salan dabû biyaniyên ku demeke dirêj li Almanyayê dijiyan û bêyî kar bûn ku kareki xwe bibînin û debara xwe bi xwe bikin. Eger lihevhatina dawî nebûye, ew 31 hezar biyaniyên ku dikevin ber vê lihevhatinê, wê ji statuya "Aufenthaltserlaubnis auf Probe" dîsa daketibûna statuya "Duldung" ê û bi dersînorkirinê re rûbirû mabûne.



Daryush Shokof:

# “Fîlmê ‘Texsiya Ezmanî’ wê rejîma Îranê bihejîne”

*“Rejîma Îrana Îslamî di temenê xweyî 30 salî de her ber bi hovîtiyê ve çû û bi çekên atomî mirovahiyê tehdît dike. Ez dixwazim bi vî fîlmî rastiya rejîma Îslamî ya faşîst bidim nasandin.”*

**İSMET SİVEREKLİ**

**Berlin (Rûdaw)** - Navê Daryush Shokof yê rastî Ali Reza Shokoufandeh e. Ew di cihana sînemayê de wek derhênerekî iranî tê naskirin. Li Hollywoodê derhênerekî navdar e. Herçiqas ew wek derhênerekî iranî ji bê naskirin, ew xwe kurd dihesibîne.

Derhênerê kurd Shokof diyar dike ku fîlmê wî yê nû, ku wê di adarê 2010'an de li sînemayan bê nîşandin, wê rejîma Îranê bihejîne.

Li derûdor dengê qêrîn û girîna mirovan dihat. Îşkence hîn nû germ dibû. Lêdan û sixêf zêde û gur dibûn. Kesên ku işkence lê dihatin kirin, bi farisî diqîriyan. Di jûriyen tarî de dozaja işkencê her zêde dibû. Mirov xistibûn çalan û di nav xwînê de digewiziyan. Jinek, li odeyekê di bin wêneyên Xumeynî de, di nav hilawîstoke de bû, lê işkence dihat kirin...

Vegotinên li jorê, hîn dîmenên fîlmê nû yê Daryush Shokof in. Navê resen yê fîlmê wî, “Heaven's Taxi” ye û bi kurdî tê wateya “Texsiya Ezmanî”. Em bi navê Rûdawê, serî li seta fîlmê wî didin û bi wî re sohbetekî germ pêk tînin.

Berîya ku li ser fîlmê xwe yê nû agahî bide me, cihê ku fîlm lê tê kişandin nîşanî me dide. Piştî nîşandina seta fîlm, weha behsa fîlmê xwe yê nû dike: “Fîlmê ku em dikşînin, mijara wê li ser rejîma dewleta Îranê ye û navê fîlm “Texsiya Ezmanî” ye. Fîlm di hindurê xwe de cih dide bûyerên encama hilbijartinên dawî yên serokkomariya Îranê û kesên ku hatinê girtin û rewşa wan ya girtîgehê. Di nav kesen ku hatina girtin de, kurd jî hene. Xwişkek li zindanê serdana birayê xwe dike. Du daxwazên birayê wê ji wê hene û ji bo van daxwazan ji xwişka xwe sozê distîne. Daxwaza yekem, divê keçik biçe Almanyayê û li wê derê bikeve dû gora Hitler. Û ya duyemîn jî di dawiya fîlm de derdikeve holê. “

Piraniya lîstikvanên ku di fîlm de dileyîzin, di jiyanên xwe yên rastîn de jî heman tiştî jiyane. Ango di fîlm de xwe dileyîzin. Di berxwedana girtîgehê de kurdek rola sereke dilîze.”

Film, îşkence û hovîtiya dewleta Îranê radixîne ber çavan: “Di sala 1979'an de li Îranê desthilatdariya rejîma Şah hate hilweşandin û li şûna wê Komara Îslamî û teokrat ava bû. Li dijî kurdan û kesen şoreşger komkujî dest pê kir. Ez mecbûr mam ku ji welêt derkevim. Rejîma Îrana Îslamî, di temenê xweyî 30 salî de her ber bi hovîtiyê ve çû û bi çekên atomî mirovahiyê tehdît dike. Ez dixwazim bi vî fîlmî rastiya rejîma Îslamî ya faşîst bidim nasandin.”

Shokofê ku di nav alema sînemayê de wek derhênerekî farisî tê naskirin, dibêje: “Ez di cihana sînemayê û destnigariye de wek şexsiyetekî faris têm nasandin; lê ez kurd im. Bavê min jî kurden Kirmanşahê ye. Zimanê dayika min farisî ye, ji bo vê yekê li mal derfet çê nebû ku ez fêrî kurdî bibim. “

Ji aliyekî ve perwerdahiya matematîk û fizîkê dibîne, lê ji aliyê din ve nikare xwe ji hunermendiyê dûr bihêle û xwe ji mijûliyeta destnigariyê dûr bêxe: “Herçiqas ez bi zanistiya pozîtîf ve mijûl bim jî, di dilê min de her hunermedî hebû û min dixwest daxwaz û ramanên xwe bi rêya hunerî derxînim meydanê. Bi vî awayî, min dest bi huner û destnigariyê kir. Min gelek tabloyên destnigarî çêkir û li gelek welatan pêşangeh li dar xist. Kesê ku bixwazê li ser tabloyên min agahdar bibe, dikare li bajarê Berlînê di “Galerie 360 grad” wan bibîne.

Naveroka tabloyên ku min çêdikir, ji ber ku fikr û ramanên min têra xwe dernedixist holê, min di sala 1990'an de dest avêt hunera sînemayê.”

Heta niha 13 fîlmên sînemayê kişandine û di fîlmek wî de aktorê li seranserî cihanê navdar Anthony Quinn rola sereke lîstiye: “Min 13 fîlmê sînemayê kişandine û di fîlmên min de lîstikvanên Hollywoodê jî cih girtine. Di fîlmê min yê bi navê “Angels Are Wired” de, Anthony Quinn rola sereke leyîst. Di fîlmê min de gelek aktor û artîstên navdar yên jî leyîstine.”

**“Di fîlmê nû de du aktorên kurd jî dileyîzin”**

Di fîlmê wî yê nû de du aktorên kurd jî cih digrin: “Di fîlmê min yê dawî de du aktorên Kurd cih digrin; Hasan Demirci û Şivan Saleem. Lîstikvan Hasan Demirci di produksiyona fîlm de jî cih digre û berpirsiyariya şêwirmendiya sehneyên aksiyonê yên fîlm jî dike. Di fîlm de herweha rola fariskî rêberê berxwedana girtîgehê dileyîze. Şivan Saleem jî rola kurdekî ku ketiye girtîgehê dileyîze.”

Shokof ji bo sînemaya kurdî amade ye: “Bi rastî min heta îro jî bo sînemaya kurdî tiştek nekiriye. Lê heta niha derfet jî çênebûn. Ez gelek derhênerên kurd nas dikim û têkiliyên min bi wan re hene. Xwediye “Mitos Film” Mehmet Aktaş nas dikim. Derfet çêbibin, ez dixwazim li ser jiyana Evdulrehman Qasimlo fîlmekî bikşînim.”



*Daryush Shokof heta niha 13 fîlmên sînemayê kişandine* *(Wêne: Rûdaw)*

# Ewrûpa ya birçî û kurdên feqîrhal



**Rêbiwar Kerîm Welî**

Di dawî de min ew bihûşt dît ku bi salane ciwanên welatên cihana sêyem wê di xewna xwe de dibînin û rêya man û nemanê bo dîtina wê didin ber xwe. Rê wek wê derbirînê bû ku berê hogirekî min ji min re behsa wê kiribû ku di dîtina yekem de xweş e, piştî sê çar rojan, dema tu li derdora xwe dinere, wek televizyonê ye, tu bi tenê dikare lê meze bikî û nikarî destê xwe lê bidî yan tevlî bibî.

Min çend roj li Fransa derbas kirin. Welatekî ciwan û bi avahiyên dîrokî dagirtî ye, lê gelê wê feqîr e. Eger min ev li Almanyayê tenê li taxeke tirkan li bajarê Köln dît, lê cih nebû li Paris û Bordeaux ku ciwanek nedîhat û daxwaza cigareyekê ji min nedikir. Sîstema sermayedarî bi rêya sosyal ve bo beşa herî zêde ya danîştvanên Ewrûpayê û ewên ku lê diminin û lê niştecîh dibin, jiyaneke ne sax û ne mirî bo însanan peyde kiriye. Di vê jiyanê de tenê sê car xwarin heye, herwiha pereyên av, elektrîk û kirêya xanî didin mirovan.

Tiştê ku bi tundî bala min kişand, berbelavbûna revenda kurd li Ewrûpayê bû, berevajî revenda tirk a hevgirtî, nemaze li Almanyayê. Çapa Ewrûpa ya şeş rojnameyên tirkî (eger ne şaş bim) li seranserê welatên Ewrûpa tên belavkirin û firotin û bandorê li ser raya giştî ya welatên ku tirk di wan de dijîn dikin. Herwiha nêzîka 10 kenalên TV'yê hene, taybet bo tirkên Ewrûpayê. Min gelek caran li Ewrûpayê li gel dost û biraderên xwe yên kurd de behsa van meseleyan dikir, ka gelo çima revendeke kurd jî tune û çima wisa lawaz û qels in?

Metin Incesu ku rewşenbîrekî Bakurê Kurdistanê ye û jî demeke dirêj ve kar li ser meseleya penaberên kurd li Ewrûpayê dike, behsa gelek sedeman dikir ku di vî warî de dibin rêgir û astengî, lê ya ku bala min kişand dema got ku hê jî wextê serkirdên kurd tên Ewrûpayê bi şermînî danûstandinan dikin û bi dizî li Ewrûpayê li gel xelkê dicivin. Incesu got ku ji bilî Serokê Herêma Kurdistanê ku carekê hat Ewrûpayê û civînên berfireh û cemawerî li gel xelkê kiriye, serkirdayetiya siyasî ya Kurdistanê revenda kurd paşguh xistiye. Ew herwiha behsa vêya dikir ku zêdeyî sî salan e grew li ser nifşê yekem ê revenda kurd tê kirin, lê nifşê duyem ku li Ewrûpayê hatiye dinyayê zêde pasîf e û qet hisab jî bo wî nayê kirin.

Berevajî kurdan, tirk li Ewrûpayê li kijan bajarî bijîn, taxekê bo xwe diyar dikin û lê kom dibin, partiyên wan li Tirkiyeyê şerê hevdu dikin lê dema pirs tê ser revenda tirk li Ewrûpayê, di nav parlamenê de milê hevdu digrin û serdana ciheki ku hema deh tirk lê hebin dikin. Serokwezîrê wan ne li salonan lê li nav meydanên mezin ên bajarên Ewrûpayê li gel wan diaxife. Revenda tirk ne tenê faktoreki bi hêz e bo geşkirin û aramiya rewşa aborî ya Tirkiyeyê, lê bûye hêzek ku niha guşarê dixe ser navendên siyasî yên Ewrûpayê jî.

Medya û çapemenî li Ewrûpayê bûne yek jî faktorên herî giring yên bihevgirêdan û dirustkirina revendên netewî, olî û mezhebî li welatên Ewrûpayê, ku mixabin hê jî me kurdan tu gav di vî warî de nedane. Heftenameya Rûdaw ku vê dawiyê mehnameya Le Monde diplomatique jî derdixe, bi awayekî rêxistî li Ewrûpayê (bi herdu zaravên soranî û kurmancî) derdikeve, lê mixabin hejmara wê jî çend hezar daneyan derbas nabe, lewre li gor hemû kurdên xwende yên li Ewrûpa cihê mixabiniyê ye.

Belavbûna revenda kurd li Ewrûpa û asîmîlebûna nifşê duyem dibe sedem ku kurd her revend biminin û nebin caliye. Êdî jî hertiştî bivetir jî ku li Ewrûpa dostên siyasî yên kurdan di nav hizb û saziyên dewletê de tên xanenişinkirin û di nav nifşê nû yê siyasetvanên Ewrûpayê de dostên kurdan pirr kêm in. Lewre bi rastî danîn û aktîfkirina ofîsa Herêma Kurdistanê li nav balyozxaneyên Îraqê li welatên Ewrûpa bûye pêwîstiyek, ji ber ku ji wir deriyên diplomasiyeke fermî li gel welatan tên vekirin û dibe bingeheke resmî ji bo rêxistinkirina kurdan li welatên ku di wan de dijîn.

## Daryush Shokof kî ye?

*Daryush Shokof hunermend, filozof, destnigar, peykertraş, senaryonûser, derhêner û lîstikvanekî fîlm ê kurd e. Di sala 1954'an de li Tehranê bi navê Ali Reza Shokoufandeh ji dayik bûye. Daryush Shokof niha li Almanyayê dijî.*

*Hunermendê kurd Shokof di sala 1979'an de çûye Amerîkayê û demekê li wir jiyaye. Di salên 1980'an de li zaningeha Teksasê beşa Fizik û Matematîkê xwendiye. Dû xwendina beşa Fizik û Matematîkê, li “Filmakademie New York” dest bi xwendinê dike. Di sala 1981'an de cara yekem bêşdarî pêşangeha hûnerî ya destnigarî dibe. Pêşangeh li bajarê New Yorkê di galeriya “Gorky “ li dar dikeve.*

*Derhênerê kurd Shokof li Ewrupayê jî pêşangehên bi vî awayî li dar dixe. Pêşangeha wî ya Ewrûpayê li başarê Almanya Kölnê di galeriya “März” de li dar dikeve. Di sala 1990an de, li ser şêweya Maximalismusê manifesto dinivisine.*

*Hunermendê kurd Shokof di navbera salên 1981 û 2003'an de bi berdewamî hunera destnigarî dike û li seranserê cîhanê nêzîkî 60 pêşangehan li dar dixe. Di sala 1990an de dest bi xebata derhênerî dike û bi navê “Angels Are Wired” li Pragê kurtfîlmek dikşîne. Dû xebata kurtfîlm, fîlmê sînemayê yê bi navê “Seven Servants” dikşîne.*

*Shokof heta niha heşt fîlmê metrajdirêj û deh jî kurtfîlmên sînemayê kişandiye.*

Almanya:

# Polîsên alman avêt ser Milli Görüşê

*Milli Görüş mezintirîn rêxistina Îslamîst li Amanyayê ye. Rêxistina ku hewl dide di nav siyasetê de cih bigre, ji aliyê Verfassungsschutzê tê şopandin.*



*Li Kerpenê polîsê Alman di navenda Milli Görüşê de lêgerîneke berfireh kirin.*

**Köln (Rûdaw)** – Çarşema borî dozgeriya Kölnê li seranserê Almanyayê lêgerîn di buroyên rêxistina tirk Milli Görüş de pêk anîn. Milli Görüş ku tê wateya "boçûna netewî", bi xerabbikaranîna pereyên xêrdayînê û nedana beşên ji bo sîgortayên karkeran tê tewanbarkirin.

Li gelek bajarên Almanyayê çarşema borî (2.12.2009) buroyên mezintirîn rêxistina Îslamî li Almanyayê, Milli Görüş, hatin lêgerîn. Dozgeriya bajarê Kölnê rêxistina Milli Görüşê bi "sextekariyên berfireh di meseleya pereyên xêrdayinê" û nedana pereyên sîgortayên karkerên xwe de tewanbar dike û behsa derdora 30 milyon Euro tê kirin. Li seranserê Almanyayê 26 buro û malên rêvebirên vê rêxistinê hatin lêgerîn û materyal hate desteserkirin. Di nav bajarên ku lêgerîn li wan hat kirin, Berlin, Hamburg, Frankfurt, München, Bonn, Dortmund, Bielefeld, Duisburg, Hannover, Ulm, Stuttgart, Nürnberg, Bremen, Darmstadt, Konstanz û Frankenthal jî hebûn. Tenê li herêma NRW li 12 cihan lêgerîn hebûn û lêgerîna li navenda rêxistinê, li Kerpen a nêzîkî Kölnê, heta saet 12'ê nîvro domand.

Milli Görüş a ku bi salan e di jêr çavdêriya Saziya Parastina Makezagonê / Verfassungsschutz de ye, tewanbariyen li hemberî xwe red kirin û got ku sucdarkirin bê bingeh in û rayedar dixwazin ku rêxistina wan krimînalîze bikin.

Li gor agahiyên Verfassungsschutz Milli Görüş bi 27 hezar endaman, mezintirîn rêxistina Îslamî li Almanyayê ye û 330 komelên çandî û mizgeft bi vê rêxistinê ve girêdayî ne. Li gor agahiyên Milli Görüşê bi xwe, ew li seranserê Ewrûpayê xwedî 87 hezar endam e û derdora 300 hezar kes jî nêzîkî wan in. Milli Görüş ji aliyê rayedarên almanî tê tewanbarkirin ku ew normên makezagonê û demokratiyê qebûl nake û ji ber vê yekê beriya niha jî li dijî Milli Görüşê doz hatibûn meşandin. Di bihara borî de li Münchenê ji ber sucdarkirina bi "avakirina rêxistinek krîmînel û bazirganiya derqanûnî ya bi pereyan" dozek li dijî Milli Görüşê hatibû destpêkirin. Li Kölnê jî di tebaxa 2008'an de Milli Görüşê ketibû ber lêpirsînê

Lêgerînên vê dawiyê dibe ku ji aliyê siyasî ve jî bandora xwe bikin. Milli Görüş a ku di bin çavdêriyê de ye û ji aliyê Verfassungsschutz weke "rêxistinek Îslamîst" tê hesibandin, bi rêya rêxistina îslamî "Dachverband Islamrat" – ku di bin bandora Milli Görüş de ye – tevlî "Konferansa Îslamê ya Hikûmeta Federal"/ Islamkonferenz der Bundesregierung jî dibe. Wezîrê Karên Hundir ê Almanyayê Thomas de Maizière eşkere kiribû ku konferansa Îslamê di gulana 2010 de bidomîne. Li ser tevlîbûna rêxistinên ku beşdar bibin, heta niha biryar nehatiye stendin.




## "Pereyê xwe ji banqayên Swîsreyê bikşînin"

Piştî ku ji referandûma swîsreyiyan qedexeya avakirina minareyên mizgeftan derket, cîhana Musulman matmayî li Swîsreya "lîberal" dinêre û gelek rêxistinên navnetewî yên weke Netewên Yekgirtî, Yekîtiya Ewrûpayê û Konferansa Welatên Musulman banga xwînsariyê di helwestên nerazîbûnê de kirin. Ji bilî protesto û rexneyên tuj, bangên boykotkirina Swîsreyê û berhemên wê jî bilind dibin. Yek ji wan kesên destpêkê ku bi tundî helwesta swîsreyiyan rexne kir, serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdoğan bû. Erdoğan qedexeya minareyan weke nîşana "pêşketina boçûnekî nijadperest û faşîst li Ewrûpayê" bi nav kir û got ku Îslamofobî jî wek Antî-semîtizmê guneheki li dijî mirovatiyê ye. Ji bilî Erdoğan, wezîrê wî yê Ewrûpayê Egemen Bağış jî bang li dewlemendên Musulman ên cîhanê kir ku pereyên xwe ji Swîsreyê bikşînîn û li Tirkiyeyê razînin. Ji heşt milyon welatiyên Swîsreyê, 400 hezarê wan Musulman in. Çavdêr helwesta swîsreyiyan weke bayekî tirsa ji Îslamê ku li Ewrûpayê belav dibe, dinirxînin.

# Çeteya tirk li ber dadgehê ye



*Endamên çeteya tirk li Kölnê di dadgehê de.*

*Bi armanca kuştina karmend û siyasetmedarên kurd ên li Ewrûpayê çeteyekî tirk hatiye avakirin. Endamên grûbê beriya ku çalakî pêkbînin li Kölnê hatin girtin. Lê ne diyar e kî li pişta vê grûbê ye?*

**Köln (Rûdaw)** – Komeke tirk ku lşi Almanya bi armanca kuştin û şêlandina kurdan çeteyeke bi navê "Rexistina Têkoşerên Netewî ya Ewrûpayê" ava kiribûn, hatin girtin û ji 30'ê Mijdarê ve li pêşberî dadgeha bajarê Kölnê tên darizandin. Çeteya ku ji pênc kesan pêk tê, beriya ku ti kiryaran bi encam bînin, hatin girtin. Li gel endamên çeteyê çek û pîlana kuştin û şêlandinê jî ketin destê polîsê alman.

Endamên çeteyê Ali Bodur (50), Aydın Sakarya (43), Doğan Yılmaz (42), Dursun Diktaş (60), Hüseyin Beştepe (39) ji ber avakirina rêxistinek krîmînel, daxwaza pêkanîna tawanan û binpêkirina qanûna çekan tên darizandin. Beriya vekirina dozê herdu endamên komê Doğan Yılmaz û Aydın Sakarya sûcê xwe qebûl kirin û agahî dan dozgeriyê.

Li gor doznameyê her pênc kesên endamên çeteyê di kanûna 2008'an de li mala Aydın Sakarya ya li Kölnê "Rexistina Têkoşerên Netewî ya Ewrûpayê" ava kirin. Armanca wan çalakiyên dijî kurdan bûye. Berdevkekî dadgehê ragihand ku "kîna li dijî kurdan û hizra tirkî-nijadperestî" motîfa avakirina vê komê bûye. Li Ajansa Firatê jî tawanbar bi Jitem û îstixbarata Tirkiyeyê re di têkiliyê de bûne.

Li gor doznameyê armanca komê ew bûye ku dewlemendên kurd li Amanyayê bişelînin û bi vî awayî hem alîkariya aborî ya ji bo PKK kêmtir bikin û hem jî têkoşîna wê li Tirkiyeyê lawaz bikin. Ji bo kiryarên pîlankirî tawanbaran çek jî peyda kiribûn, lê li gor agahiyên berdevkê dadgehê çete ji armancên xwe yê şerê li dijî PKK'ê dûr ketiye û ji bo berjewendiyên şexsî berê xwe dane pîlanên şêlandinê.

Koma ku piştî avakirina xwe hewl da ku di çileya 2009'an de kurdekî dewlemend bişelînin, demek dirêj ew kes şopandin. Lê dema ku xwestine ew birevînin, otomobîla wan kar nekiriye û wan pîlana xwe paşve xistine. Piştî demeke kin, di 1'ê Adara 2009'an de, çeteya tirk dîsa xwestiye ku kurdan bişelînin, vê carê jî kargehek sporê ya karmendekî kurd li Köln-Kalkê kirine hedef. Lê wê carê jî polîsên ku ji çalakiyê agahdar bûye tedbîran stendine û endamên çeteyê ji tirsan dev ji pîlana xwe berdane.

Rojekê piştî vê bûyerê polîsan avêtin ser malên endamê çeteyê û ew girtin. Ji bilî Ali Bodur kesên binçavkirî piştî demekê hatibûn berdan. Ali Bodur jî piştî rûniştina dozê, ya di 2'yê kanûnê de serbest hat berdan.

Doza ku di 30'ê Mijdarê de dest pê kir, bo 2'yê Kanûnê hate paşvexistin. Dadwer Karl-Heinz Schumacher pêşniyar li tawanbaran kir ku careke din li ser kiryarên xwe bifikirin û eger ew li xwe mikur bên, ew dikarin li benda cezayekî siviktir bin.

Li gor rayedaran Ali Bodur yê 50 salî serokê çeteyê ye û eger sûcê wî bê îspatkirin, ewê heta 10 salan û endamên çeteyê jî heta 4 salan cezayên zindanê bigrin. Dadgeh wê di 14'ê Kanûna 2009'an de biryar bide.

Berpirsa Navneda Lêkolînên Kurd (NAVEND) Bêrîvan Aymaz di derabê bûyerê de pirsên WDR Online bersivand û got "li Almanya di navbera herdu gelan de gelek pirsgirêk hene ku dikarin ji nişkê ve biteqin." Ew diteqezîne ku car caran li hewşên dibistanan jî ji ber vê arîşeyê pevçûnên tund çêdibin. Dewleta tirk dixwaze pirsgirêkê bi awayekî aştiyane çareser bike, lê ev gav hê jî li ser rewşa tirk û kurdên li Almanyayê bandoreka erênî nekiriye." Aymaz her wisa dibêje: "Ez hêvîdar im ku dadgeh di doza li Kolnê de nîşaneka zelal bide da rêkxistinên wisa biçûk neyên dîtin."

# AIDS Afrîkaya Başûr vala dike: Rojê 1000 mirî

*Bêtirî pênc milyon mirov li Afrîkaya Başûr bi vîrûsa HIV ketine. Tenê nîvê kesên pêketî tên dermankirin. Qeyrana aborî û patentên şîrketên dermançêker rewş hîn xerabtir kirin.*

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Herçiqas AIDS hîn jî nexweşiyek bêderman e, lê çendîn derman hene ku dikarin destpêkirina nexweşiyê bi paş bixin û rewşa pêketiyan baştir bikin ku karibin bi dehsalan tevî vê nexweşiyê bijîn. Tevlî hebûna van dermanan jî, bi milyonan mirovên nexweş ji tedawîkirinê bêpar in. Ji ber ku dermanên AIDS'ê bi patentên şîrketên rojavayî yên dermançêker parastî ne, ew derman nikarin ji aliyên şîrketên din bên hilberîn û bi bihayekî ku mirovên welatên xizan karibin bikirin, bên firotin.

Bi 5,7 milyon pêketiyên vîrûsa HIV û rojane 1000 miriyên AIDS'ê, Afrîkaya Başûr xerabtirîn epîdemiya AIDS'ê dijî. Tevlî vê hejmara zêde jî rewşa tedawîkirina pêketiyan gelekî xerab e û ji dêvla belavkirina dermanan, nexweş di lîsteyên gelekî dirêj de tên tomarkirin. Tenê di navbera salên 1997 û 2008'an de hejmara miriyan du qat bû.

Qeyrana aborî ya cîhanî jî rewş hîn aloztir kir, hem li Afrîkaya Başûr û hem jî li seranserê cîhanê: Rêxistinên alîkariyê yên navnetewî bêçare ne ku budceyên xwe ji bo projeyên AIDS'ê kêm bikin û hinek şîrketên ku berê heqê kampanyayên li dijî AIDS'ê ji bo karkerên xwe didan, niha bi vî karî re ranabin. Heta mezintirîn şîrketa hilberîna elmasan ya Afrîkaya Başûr, De Beers, jî pilan dike ku kampanyên amojgarî û agahdarkirina di derbarê AIDS'ê de kêm bike.

Di nava 5,7 milyon pêketiyên HIV li Afrîkaya Başûr, 280 hezar zarok jî hene û ji ber AIDS'ê derdora 1,5 milyon zarok jî sêwî mane. Li gor lêkolînan, hejmara sêwiyan dikare heta sala 2015'an bighîje 5,7 milyonan û ev jî wê jî sêyan yekê zarokên vî welatî be.

Afrîkaya Başûr ne tenê welate ku ji ber vîrûsa AIDS'ê dinale, li çendîn welatên din yên Afrîkayê rewş hîn xerabtir e: Li Swazîlandê ji sêyan yêkê di navbera 15 û 49 salan de vîrûsa AIDS'ê di nava xwe de hildigre. Rêxistina Bijîşkên Sînornenas ji sedî 47'ê mirinên zarokên di jêr pênc salan de bi vîrûsa HIV girê dide. Rewşa welatên din yên Afrîkayê, Botswana, Zîmbabwe û Namîbiya jî nêzî rewşa Swazîlandê ye û tenê di sala 2008'an de 1,9 milyon mirov bi vîrûsa HIV ketin, tenê li welatên başûrê Çola Saharayê.

Bi munasebeta "Roja AIDS'ê ya Cîhanê" di 1'ê kanûnê de, Rêxistina Bijîşkên Sînornenas dîsa bangî şîrketên dermançêker li seranserê cîhanê kir ku patentên dermanên AIDS'ê rakin, da ku bi nirxekî erzantir dermanên AIDS'ê karibe bê hilberîn û belavkirin.

Li gor raporta dawî ya Netewên Yekgirtî di derbarê AIDS'ê de, li seranserê cîhanê 33,4 milyon mirov bi vîrûsa HIV ketine, di nav wan de 2,1 milyon zarokên di jêr 15 salan jî hene. Di sala 2008'an de 2,7 milyon kes nû bi HIV ketin û du milyon jî di encama wê nexweşiyê de mirin. Tevlî van hejmarên metirsîdar jî, hejmara kesên ku nû bi vê nexweşiyê ketin, di 8 salên dawî de ji sedî 17 kêm bûye. Sedemên kêmbûna jî tedawîkirina hejmarek berfirehtir ya kesên pêketî ye.

Guherîna klîmayê:

# Girantirîn bar li ser pişta xizantirîn welatan

*Bandora guherîna klîmayê êdî tê hîskirin. Herê zêde jî li welatên xizan. Eger welatên dewlemend alîkariyê nekin, pispor pêşbîniya koçberiyek berfireh dikin.*



Welatên xizan ên berav jiber tunebûna derfetan niha di bin xetera klîmayê de ne

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Herêmên zuha hîn zuhatir dibin û yên şil hîn şiltir. Tenê li Amerîkaya Navîn bihayê ziyana ku di encama guherîna klîmayê de rû daye, dighîje 105 milyar Dolar. Welatên herêmê berpirsyarên guherînê welatên pîşesaz dibînin û doza qerebûkirinê dikin.

Golên zuhabûyî, bablîsokên xeternak û herêmên di bin avê de mayî: Amerîkaya Latîn bandora guherîna klîmayê ya global, bi hemû hêza wê his dike. Li Bolîvyayê ava mezintirîn gola parzemîna Amerîkaya Başûr di van salên dawî de bi awayekî metirsîdar kêm bûye. Arjantîn bi zuhabûneke hişt re rûbirû ye û li Karîbika cinetî jî bablîsok şopekî mirinê li paş xwe dihêlin. Wezîrên jîngehê yên herêmê dibêjin ku lîsteya zerarên klîmayê roj bi roj zêde dibin.

Ne tênê li Amerîkaya Başur bandora guherîna klîmayê bi hemû hêza wê tê dîtin û his kirin, li seranserê cîhanê bandora vê guherînê xwe dide xuyakirin. Çiyayên qeşayê yên Antarktîka û Cemsera Bakur ji ber germbûna klîmayê tên xwarê, li hemberî wê pileya ava okyanûsan hildikeve û herêmên berav di bin avê de diminin. Welatên herî xizan ên weke Bangladeş jî niha ve bi encamên vê guherînê re rûbirû ne û tê çaverêkirin ku rewşa bi milyonan mirovên li beravan wê hîn gelekî xerabtir bibe. Herî zêde jî li welatên xizan ku ji ber tunebûna derfetan nikarin xwe li gor guherîna klîmayê amade bikin. Ew herêm wê bêhêşyarî bi xezeba xwezayê re rûbirû bimînin.

Herçiqas jî zû ve pisporên klîmayê li zengilê alarmê dixin jî, lê hikûmetên welatên peşketî û mezintirîn berpirsên guherîna klîmayê, bi nivdilî nêzîkî tedbîrên li dijî vê guherînê dibin. Welatên pîşesaz li hevûdu dinêrin û li benda gavên hevûdu ne. Ji bo niqaşkirina vê rewşê ji 7 heta 18'ê kanûnê konferansa klîmayê li Kopenhagenê tê lidarxistin. Di vê konferansê de serok û serokwezîrên welatan wê li ser tedbîrên li hemberî guherîna klîmayê niqaş bikin.

Di çarçoveya konferansa Kopenhagenê de welatên Amerîkaya Navîn û welatên Karîbikê Belize, Kosta Rîka, Komara Domînik, El Salvador, Gûatemala, Hondûras û Panama jî xwe amade dikin ku pêşniyazeke fermî pêşkeşî welatên pîşesaz bikin û biryarên konkrêt û piştgiriya aborî ji wan bixwazin. Wezîrê jîngehê yê Nîkaragûa, Juana Arguenal, daxuyand ku welatên pîşesaz berpirsyarê feleketa xwezayî li herêma wan in û divê ev bi vê berpirsyariya xwe re rabin.

Ji konferansa klîmayê li Kopenhagenê tê hêvîkirin ku peymanek cihgir a peymana Kyotoyê ku di sala 2012'an de bi dawî tê, derkeve. Tevlî serokê DYA'yê Barrack Obama û serokwezîra Almanyayê Angela Merkel, tê hêvîkirin ku bi sedan serokdewlet û wezîr tevlî vê konferansê bibin.

Şîlî:

# Du saniye mafê propagandaya hilbijartinan

**Köln** – Di hilbijartinên pêş ên parlamenê li welatê Başûrê Amerîkayê Şîlî, berbijêrên serbixwe di rewşekî balkêş de ne: Di televizyonan de tenê du saniye dem ji bo wan hatiye terxankirin ku xwe û bernameya xwe pêşkeşî dengdêran bikin. Mehekê beriya hilbijartinên parlamenê – ku wê di 13'ê kanûnê de bên li dar xistin – spotên hilbijartinan dest pê kirin. Ji ber kêmbûna demê, berbijêr li rêyên balkêş digerin. Bo mînak, berbijêrê serbixwe Samuel Velasco "Kar! Kar! Kar!" diqîre û dema wî bi dawî tê.

Ji ber ku spotên hilbijartinan yên bi pere di televizyonan de qedexe ne, kanalên televizyonan mecbûr in rojê 40 deqîqeyan bêlaş ji bo berbijêran terxan bikin. 20 deqîqe ji bo herçar berbijêrên serokkomariyê – ku wê di heman rojê de bên hilbijartin – hatine veqetandin û 20 deqîqeyên mayî jî li sedan berbijêrên parlamenê hatiye parvekirin. Ji ber ku dengên ku partiyan di hilbijartinan borî de stendine jî roleki dilîzin, ji bo berbijêrên serbixwe tenê du saniye dimîne.

Çendîn berbijêr bi metodên cuda herdu saniyên xwe tijî dikin: "Navê min Tomás e û ya herî giring di kampanya min de...", berbijêrê serbixwe Tomás Días Hidalgo dibeje û bi vî awayî nerazîbûna xwe li dijî kêmbûna demê tîne ziman. Rodrigo García Pinochet ê neviyê serokê berê yê Şîlî, Augusto Pinochet, ti tiştî nabêje û du saniyan li ber wêneyê bapîrê xwe radiweste.

Weşandina spotên hilbijartinan li Şîlî di sala 1988'an de dest pê kirin. Di wê salê de gelê şîlînî di referandûmekê de li ser dirêjkirina desthilata Pinochet dengê xwe dan. Beriya dengdanê ji bo cara yekê spotên propaganda hatibûn weşandin. Di hilbijartinên serokkomariyê yê 13'ê vê mehê de berbijêrê kevneperest Sebastián Piñera wekî berbijêrê favorît tê dîtin. Tê çaverêkirin ku ew dawî li desthilata 20 salan ya hevpeymaniya navendî-çep li Şîlî bîne.





# Êdî ma bi kirmanckî (zazakî) fîlman temaşe kenê

Deniz Gunduz - (Wêne: Rûdaw)

**Amed (Rudaw)** - Reya verên a ke yew fîlm bi kirmanckî (zazakî) dublaj beno. Fîlmo bi nameyê “Homayan Aqil Pernayo” studyoyê kanalê televizyonê kurdkî Kurd1 de Îstanbul de dublaj bî. Derheqê dublajkerdişê nê fîlmî de ma nuştoxê kirmanckî û wayirê Weşanxaneyê Vateyî birêz Deniz Gunduzî reyde yew roportaj viraşt.

***Axir şima bi kirmanckî dublajê fîlmêk temam kerd. Xeyrên bo, pîroz bo. Kirmanckî de reya verên a ke yew fîlm dublaj beno?***

Belê, ez baş nêzaneno, no fîlmo yewin o yan ney labelê mi heta ewro nêvînito û nêheşno ke yew fîlmê sînema bi kirmanckî dublaj biyo. Mi zaf merdimanê ke bi kirmanckî eleqedar benê ra kî pers kerd. Înan kî nêvînito û nêheşno. Texmînê mi no fîlmo yewin o ke bi kirmanckî dublajê ci viraziyayo.

***Dê bineyke sere ra qisey bike. No fikrê kamî bî? Şima senî dest pêkerd?***

Tî zanenî ez KURD1 de guriyena, uca bi nameyê Xoşebere programê kirmanckî pêşkêş kena. Studyoyê Îstanbulî de ez nê programî virazena û nê studyoyî de di studyoyê dublajî kî estê. Nê studyoyan de bi kurmanckî dublajî ênê viraştene. Yew cayo winasî de hertim munaqeşeyêk beno, tî zanenî. Yew kar çira bi kurmanckî beno çira bi kirmanckî nêbeno? Îdarekerdoxa ma Rukene yew cênika zanaye ya. Meselaya kirmanckî de sey zafînan nêfikirîna. A bi xo kurmanc a labelê ferq nêkena mîyanê lehçeyan. Ma dublajê kirmanckî ser o çend rey qisey kerd. Aye tim vatêne: “Tî vaje, ma seba dublajî şinê kirmancê ke kirmanckî baş zanenê û şinê biwanê, bivinerê?” Yew tersê xo yo winasî estbî. Mi kî timî vatêne, “Eke kurmancî estê, do kirmancî kî bibê.” Bi no hewa ma bire daye ci û yew fîlm weçîna ke bicerebnîme.

***Kamî metnê diyalogan tercume kerd? Nameyê fîlmî yo orijînal çi yo? Nameyê fîlmî cayê xo girewt?***

Nameyê fîlmî yo orjînal “The Gods Must be Crazy” yo. Yanî ziwanê xo îngilizkî yo. Metnê fîlmî îngilizkî ra mi açarna bi kirmanckî. Metno ke şirketî ma rê erşawitbî kêmî bî. Aye ra ez mecbur mendo ke yew fîlmê orjînalî peyda bikerî. Ez zaf bide gêrayo û axir yew embaze arşîvê unîversîte de fîlm peyda kerd.

Nameyê fîlmî ma verî “Devanê Homayî Bîyê Bomî” panabî. Peyê cû, kek Cemal Pîranijî va ke “ma vajî ‘Homayan Aqil Pernayo’ hîna baş beno.” No name hîna fesîh bî, coka mi no name tercîh kerd û gore bi mi cayê xo baş girewt.

***Çend karakterî fîlm de estê?***

Fîlm de di karekterê serekeyî estê: cênike û merdim. Yew kî vatox esto, rolê ey kî zaf o. Nînan ra teber, da-vîst karekterî estê.

***Kamî veng da nê karakteran? Şima nê merdimî kotî ra peyda kerdî?***

Şansê ma ra kesê ke ma seba nê karî vînîtî zafê înan kaykerdoxê tîyatroyî û muzîsyenî biy. Înan şinaynê vengê xo kontrol bikerê û no het ra karê ma zaf zehmet nebî. Heta wina bî ke embazê ke dublajê kurmanckî kenê bi nê vengan zaf qayîl bî û waşt ke seba fîlmanê kurmanckiyan kî înan weçînê. Mi nê embazan de henekê xo kerdêne û vatêne “Kanî, şima vatêne ma nêşinê kirmancan bivinê, nîyade ma hem karê xo kenê hem karê şima!”

Nê merdimî embazê mi biy. Zafî ênê şonê Weşanxaneyê Vateyî. Hema derdorê mi de kam ke kirmanckî zaneno mi berdêne vengê înan qeyd kerdêne. Yew mêman ke amêne ma het, mi hema girewtêne berdêne studyo. Û wexto ke embazê bînî kî pêhesiyay, ê kî xo ser o vejiyay û amey. Her kesî meraq kerdêne ke ma nê karî senî virazenê coka eleqe zaf bî.

***Kadroyanê kirmanckî de ê, ke ziwan ra fehm bikerê estê?***

Senî ke mi vat peydakerdişê dublajkerdoxan zehmet nêbî. Labelê karê dublajî zaf zehmet bî. Çimke nê dublajkerdoxan yekser nêzanitêne ke bi kirmanckî biwanê. Ma kî tekst dayêne înan. Tabî, mi bi kirmanckiya standarte fîlm açarnayo. Ziwanê her kesî gêrayêne mintiqaya xo ser. Coka mi zaf zehmetiye dî. Wextê ra pey mi nîyada ke kes nêşino kirmanckî biwano, mi tekst ra fek verda ra. Mi yew bi yew vatêne înan kî vatişê mi tekrar kerdêne. Ez şîna vaja ke mi rolê pêrune, beno ke da-hîrîs rey çeku bi çeku, cumle bi cumle wendo. Dublajkerdoxan ra yewe waya mi bîye. Mi timî vatêne “Ti ganî kirmanckî biwanî, baş bimusî.” Aye kî vatêne “Ez xora kirmanckî baş zanena, meke ez kurmanckî bimusa.” Wexto ke waya mi dublaj kerdêne, studyo ra vejiyaye vat, “Way, no mi rê çend zor bi, mi vatêne qey kirmanckî tena yê dewa ma ya!” Û reyna yew embazo çewligij bi, nêşiyêne ke kirmanckî biwano. Mi venga ci da, ard. Mi va “Bê, ez tanî to bida gurenayene” yanî mi dersê wendişî kî o mîyan de dayêne. Mi kerd-nêkerd nê embazî nêşiya biwano. Mi reyde her bazariye kerdêne û vatêne, “Ez na çekuye kî sey hetê ma biwanî, beno?” Ey embazî berd-ard, pêru tekst vurina, tewr peyniye de sey dewa xo vaşt ra rolê xo wend û şi.

***Vengê înan şikiyayne ro karakteran, yanî, yewbînan girewtêne?***

Belê, ma cerebnayêne. Ma verî vengê înan baş goştarîtêne. Çend karekteran de cerebnayêne û wina birre dayêne.

***Zehmetiyê şima tewr zaf çi biy?***

Senî ke mi vat zehmetê ma yo tewr pîl nêzaneyişê wendiş û nuştişê dublajkerdoxan bi. Sewbîna yew zehmetiya ma çin biye.

***Deniz, tayê merdimî estê vanê, kurmancî televizyonan de ca nêdanî kirmancan (zazayan). No idîa çiqas rast o? Ma vajin, eke kes estbo kanalanê televizyonî de programan virazo gelo kurmancî nêverdenê?***

Ez bi xo rastê yew çiyo winasî nîyama labelê çiyê winasî estê. Tî zanenî her komel de cayîlî, nêzanî estê. Mavajîme kurmancan mîyan de kî estê, kirmancan (zazayan) mîyan de kî. Kurmancê ke meylê lehçeya xo kenê estê, êyê ke nêkenê pêru lehçeyan sey lehçeya xo vînenî kî estê. Mavajîme, mîyanê kirmanckî de kî ez rast ameya ke yew merdim ziwanê dewa xo parêzneno, qet empatîyê xo çin o, nêvano ke o heto bîn kî sey mi ziwanê dewa xo ra hes keno. Yanî çiyê winasî estê helbet.

Tecrubeyê mi no xusus de no yo. Tî zanenî, ez televizyon de program virazena. Televizyon karê mi niyo. Baş o, ez kirmanckî zafînan ra hol zanena labelê tecrubeyê min ê televizyonî çin o. Mi cuyê xo de rey-di rey vera kamera qisey kerdo yan ney. Ez kamera ra tersena, kamera ewnêna mi ra, ez ewnêna kamera ra. Seba ke kadro çin bi, ez mecbur menda ke nê karî bikî. Karê dublajî kî wina bî. Keso ke hem karî hem kî kirmanckî hol bizano çin o. Ez vana ganî kirmancî verê cû biewnerê halê xo, peyê cû şarî ra lome bikerê. Nika ke yew televizyon bi kirmanckî bêro ronayene seba ke zaf kadro çin o, ez bawer nêkena ke bişiyo vîst û çar saetan weşane bikero.

***Seke vanê, biewnî xo çeng hema şarî ra biçine neng! Tî rast vanî. Gelo şima dublajê fîlman dom kenê?***

Belê ma dewam kenê. Nika ma dest bi qismê diyin yê “Homayan Aqil Pernayo” kerdo û ma do nê karî hîna bi serûber dewam bikerê.

***Tî KURD1 de programê Xoşebere zî virazenî. To rê zehmet nêbo, keremê xo ra bineyke behsê nê programî bike. Hetanî ewro bîy çend programî? To kam kerdo mêman?***

Mi no hamnan dest bi Xoşebere kerd û heta nika ma vîst û panc programî viraştiy. Verî mi kesê ke bi kirmanckî eleqedar benê sey Malmîsanij, Îhsan Espar, Munzur Çem, Mehmed Uzun, Seyîdxan Kurij, Ehmedê Dirihî, Nusret Aydin kerdî mêman. Peyê cû kî çi muzîsyen çi kaykerdoxê tîyatroyî hunermendê sey Tekîn Axacik, Zelal Gunduz, Mehmet Akbaş, Hasan Saxlam, Cemal Sari, Soner Soyer û Mehmud Celayir kerdî mêman.

***Xoşebere dom kena?***

Belê, Xoşebere dewam kena.

***Tî peydakerdişê mêmanan de zehmet nêvînenî?***

Ez zehmet vînena. Çimke kesê ke hunermendê baş ê, zafî nêşinê (bese nêkenê) ke bi kirmanckî baş xo îfade bikerê. Program kî tena bi nuştoxan nêviraziyeno. Ez wazena ke program rengîn bo, mesleganê ciya-ciyayan ra merdimî mêman bê. Labelê reyna kî baş o, mi heta ewro zaf mêmanî peyda kerdî û hîna kî peyda kena. Tena peydakerdişê mêmananê ciniyan zaf zamet o. Heta ewro tena di cinî biy mêmanê mi. Ciniyê ke ke hem hunermend ê hem kirmanckî zanenê zaf tay ê. Seba ke ez wazena kaliteya programî baş bo, kesê ke baş kirmanckî nêzanenê ez înan dawet nêkena. Ê ma, sey komel (cemat), problemê ma yo tewr pîl ziwan o.

***Sewbîna çi xebatê to estê?***

Ez karê weşanxaneyî kena, yanî weşanger a. Esas karê mi no yo. Ez wayirê Weşanxaneyê Vateyî ya. Heto bîn ra televizyonê KURD1 de guriyena û hefte de reyê yew programê radyoyî kî virazena. Ez heftê de reyêk Radyoya Vengê Rusya de xeberanê kirmanckî zî wanena. Yew het ra kî bi edebiyatê kirmanckî eleqedar bena. Senî ke mi vat, seba ke no ware de keso ke bişiyo bi kirmanckî binuso û biwano zaf tay o, her kar merdimanê sey min û to ser o maneno.

***Keyeyê to awan bo. Seba ke to zehmet kerd, wextê xo ma rê abirna, berxudar be.***

Ez kî zaf sipas kena, keyeyê to kî awan bo.



Afîşê Fîlmê "Homayan Aqil Pernayo"

## Heqê Gonî


Roşan Lezgîn

Mela Evdê yewêdo şimşato derg o. Gama ke rayîr şino, her gama ey di metreyî hîra ya. Ti vanî qey eceleyê ey esto yan esparan nayo dima, hertim lezkanî rayîr şino. Eke çarşîyêka qelebalixe de rayîr şiro, çend gaman ra reyêk nat û wet verdîyêno merdiman ro.

Vatê, rojêk Çarşîya Veşayî yê Dîyarbekirî de ez û yew camêrd ginay pêro. (Nêvano ez bi xo verdîyaya camêrdî ro, ha!) Yewêko kilmeko pîsek bi. Fetilîya mi ser, va:

- Ti çi sey bergirî rayîr ra şinî! Biewnî xo ra ver, wey!...

Qala bergirî sey guleyî gina mi ro. Mi va:

- Bizêko virnik! Biewnî ez to sey lulike binê linga xo de pelixnena!

Willey yew ey ra yew mi ra. Ma da pêro. Milet kewt miyanê ma.

Ê mi zî, yew şilfa min a qijkeke esta. Ge-ge ez xo rê pê saye yan xîyar-mîyar pacena. Willay, de mi şilfa xo vete. Û ez qîraya, mi va:

- Mi veradêne! Ez ey kardî kena...

Ey çim gina şilfîya destê mi ro, qey ey zana ke merdim pê nêmireno, mi dî, miletî ra va:

- Ey veradêne. Dê hela ey veradêne. Wa yew-di kardan mi ro do. Ez heqê goniya xo ey ra gêna!

Vatê, senî ke ey behsê heqê gonî kerd, mi şilfîya xo kerde tunika xo, mi va:

- Pîso heram! Çimê to tede yo ke ti goniya xo mi ser o bikî pere!

(Oxro ke hende çikus o, gama ke qalê heqê gonî biyo, zarqeyê ey teqayo!)

Vatê, nê qalan ser o huyayiş bi miletî girewt. Miletî ma her di zî veradayî.

Bi no qayde pêrodayişê ma qediya. Ma her yew xo rê rayîrê xo ra şiy.

**Rûdaw** **Şertên Abonetiyê**

**Ji bo salekî:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda:* 60 Euro · *Swîsre*: 120 CHF · *Brîtanya*: 60 GBP *Swêd* (Schweden): 900 SEK · *Danîmarka* (Danemark): 600 DKK · *DYA* (USA): 100 USD *Kanada* : 120 CD · *Tirkiye*: 100 TL
**Ji bo şeş mehan:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda*: 30 Euro · *Swîsre*: 60 CHF · *Brîtanya*: 30 GBP · *Swêd*: 450 SEK · *Danîmarka*: 300 DKK *DYA* (USA): 50 USD · *Kanada*: 60 CD · *Tirkiye*: 50 YTL

**Ji bo Almanya:** Rudaw Media GmbH
Bank: Deutsche Bank Köln · Konto Nr: 2450161
BLZ: 37070024
**Ji derveyî Almanya:**
IBAN: DE48370700240245016100
BIC: DEUTDEDBKOE
**Navnîşan:**
Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**E-maîl:** info@rudaw.de



Jean-Francois Julliard - (Wênê: Rûdaw)

## Sekreterê Rêxistina Rojnemevanên Sînornenas Julliard:

# Divê Tirkiye kurdî wek zimanek fermî bipejirîne

*"Ji her aliyî ji me re tehdît tên. Yek ji van tehdîda dewletan e. Bi taybetî dewlet li ber azadiyên rojnamevaniyê dibe asteng. Hin jî rêvebirên gelek dewletan, wezîr, serokomar rexneyan qebûl nakin. Ji bilî van hin tehdîtên taybet jî çêdibin, wek hin kesayetên wek karsaz û sîyasetmedar. Yanê ev şexsiyet dikarin ji bo hin hesabên xwe erişî çapemeniyê bikin. Tehdîtek mezin jî ji komên hêzên çekdar tê. Bi taybetî ev yek li Îraqê pêk tê."*

**WELAT BADÎKAN**

**Paris (Rûdaw)** - Rêxistina Rojnemevanên Sînornenas (Reporters sans frontières) di sala 1985'an de li Fransa ji aliyê Robert Menar, ku îro hin jî serokê we ye û çend rojnamevanên din ve hat damezrandin. Armanca wan ya destpêkê, ne armanca îro bû. Ve rêxistinê dixwest bi şeklê ajanseke roportajan kar bike û cih bide nûçeyên ku di medyaya klasîk de dernakevin. Wek mînak, şerên ku hatin jî birkirin, li welatên Afrîqa wek Rûanda. Rojnemevanên Sînornenas bi hewla ku balê bikişînê ser buyêren ku di medya serdest de cih nedigirt, hatibû damezrandin. Berpirsê Rêxistina Rojnemevanên Sînornenas Jean-Francois Julliard pirsên Rûdawê bersivandin.

Jean-Francois Julliard ji sala 1998'an virve endamê Rêxistina Rojnemevanên Sînornenas e. Ew demeke dirêj di başa Afrîqa û beşa lêkolînên zextên ser rojnamevanan de karkiriye û di sala 2008'an de bûye Sekreterê Giştî yê Reporters sans frontières. Julliard di sala 2009'an de Xelata Aachener Preis vergirtiye û ew niha editorê kovara Qui-Vive ye.

***Di armancên rêxistina we yên destpêkê de çi guherîn qewimîn?***

Piştî damezrandinê demekî em bi tiştekî şiyarbûn. Eger nûçeyekî di medya cihanê de cih nagre, hingê rojnamevanên wan welatên ku lê buyêr diqewimin, nikarin bi azadî agahiyan bidin. Yanî azadiya ragihandinê û azadiya ramanê pêk nayê. Lewma di sala 1988 – 1989'an de armanca rêxistina me guharî. Ji we rojê virve, ew rêxistin bû rêxistineneke parastina rojnamevanan.

***Tevna rêxistina we çawa ye? Hûn çawa û li kuderê kar dikin?***

Statuya endamên rêxistina me gelekî cûda ne. Hin ji wan li nawenda Parîsê dixebitin. Ew nêzî 20 kes in. Yê din rojnamevan, hiqûqnas, parêzer û kesên ku di karên pêwendiyê de dixebitin. Herwiha rêzeke navnetewî heye. Buroyên Rojnemevanên Sînornenas hema li hemû welatên Ewrûpa hene. Li Amerîka, Tayland û Kot d'Ivoir jî hene. Û gelek peyamnerên li welatên cuda ku dixwazin bi rêya rêxistina me mafê xwe biparêzin û bi serbestî karê ragihandinê bikin hene.

***Hemû endamê we tenê rojnamevan in?***

Endamên me bi giştî rojanamevan in. Lê ne hemû. Li gorî me, ji bo ku mirov mafê ramane biparêzê ne pêwîst e ku mirov rojnamavan be. Ji bilî rojnamavanan, gelek kesên din jî li vî mafî xwedî derdikevin. Azadiya ragihandinê ji rojnamavanan dibore. Ev mesele ne pirsgirêka rojnamevana ye.

***Hûn xebatê xwe çawa fînanse dikin?***

Em bi taybetî bi firotina albuman rêxistinê fînansêdikin. Em salê 2-3 albuman çap dikin. Ji bilî vê yekê hin kampanyeyên salane jî hene. Di panelan de fotograf têne firotan. Em bi fotograf û fotografkêşan re gelek dixebitin. Hin caran hin xêrxwaz jî alikariya me dikin. Ji hin dewlet û ji saziyan jî em alikarî digirin. Mehane ya ku endamê me didin ji bo me dibe alikariyek mezin. Dema ku em van dahatan komdikin budçeya me ya salane dertê....

***Rêxistina we li dijî zextên ser rojnamevanan çi dike?***

Rojnemevanên sînornenas di destpêkê de ji bo parastina rojnemevanên di girtî hat damezirandin. Armanca me ya yekem serbestberdana wan bû. Ew rojnemevan ji ber pîşeya xwe hatibûn girtin. Îro jî ji sedî zêdetir rojnamevan di girtigehan de ne. Li hinekê wan gelek cezayên giran hatiye birin. Li hinekan 30 sal cezayê zindanê hatiye birin. Di destpêkê de armanca xebatên me, ji bo serbest berdana û alikariya malbatên van rojnemevana bû.

***Hûn çawa alikariya malbatên rojnamvanên mexdûr dikin?***



Julliard di sala 2009'an de Xelata Aachener Preis vergirt (Wênê: RSF)

Ji ber malbatên van rojnamevanan di rewşek xirab de dijîn û mecbûr diminin ku bi pirsgirêkên dijwar re têdikoşin, em alikariya wan dikin. Ji bilî vê yekê ji bo rojnamevanên tên kuştin jî em xebatan dimeşînin, ankêtan çêdikin. Li wan welatên ku lêkolîn çêdibe em alikariya wan dikin. Ji bo kûjêr werin girtin û cezakirin. Li hemberî hemû sansoran em têdikoşin. Girtina radyoyek, komkirina rojnameyek, şewitandina çapxaneyek, seknandina weşana televizyonan yanê li cihanê li hember hemû sansoran em têdikoşin.

***Prensîbên we çine ji bo endam û xebatkarên we?***

Herçend Rojnemevanên Sînornenas li tiştan berfireh dinêrin jî hin limîtên me jî hene. Yek ji van, em kesên ku bangî şiddetê dikin, bangî kuştina mirovan dikin, bangî kîn û nefretê dikin û nijadperestiyê dikin wek rojnamevan û endam qebûl nakin.

***Pirsgirêkên wiha zêdetir li kîjan welatan diqewimin?***

Demekî li Ruandayê û çend welatên din yên cihanê hin rojnameyan banga qirkirina beşek ji civakê kirin. Hin rojnamevanan navên kesên hedef weşandin û banga kuştina wan kirin. Helwestên wiha bi rojnamevaniyê re eleqa xwe nîne. Tiştên wiha propagandaya siyasî ye û sûc e...

***Hûn bi azadiya medyayê ya Ewrûpayê memnûn in?***

Di hin xalên Peymana Mafên Mirovan ya Ewrûpa de azadiya ifadekirina hemû raman û fikran heye. Heta hin fikrên ku mirovan şoq jî dikin jî hene. Parastina azadiya çapameniyê jî mafeki ifadekirina ramanê ye.

***Hûn bi giranî li kîjan welatên cihanê zexta ser çapameniyê dişopînin?***

Em hemû deverên cihanê dişopînin. Em li Afrîqa Kote Divoir, Zîmbabwe û hin dewletên ku hindik têne nasîn dişopînin, wek Erythrê. Li van dewletan rojnamevanên ku di rewşa xerab de ne hene. Em bi Asyayê ve jî nêz ve eleqeder in, ji ber ku parzemîneke zû tê guhartin e. Ji ber li vêderê têkiliyên bi derve re qutkirîne, pirsgirêkên azadiya çapameniyê hene. Em ji bo dewletên wek Çîn, Nepal, Wîetnam û Bîrmanya jî dixebitin. Em di derheqê Rusya de jî dixebitin. Li Asya Navîn li gor me di warê azadiyên çapemeniyê de gelek pirsgirêk heye. Li Amerîka Latîn, Kuba me eleqeder dike. Li Kubayê gelek rojnamevan di girtigehê de ne. Bûyêrên ku li Meksîka û li Perûyê diqewimin jî em dişopînin. Li van dewletan hin jî li dijî rojmenevanan şiddet tê pêkanîn. Heroj rojnemevan bi êrişan ve rû bi rû ne. Ji ber ku nûçeyên wan li xweşa hin kesan naçe ew leqayê êrîşan tên.

***Gelo li ser we jî tehdîd heye?***

Ji her aliyî ji me re tehdît tên. Yek ji van tehdîda dewletan e. Bi taybetî dewlet li ber azadiyên rojnamevaniyê dibe asteng. Gelek dewletên ku ne demokrat in rojnemevanan binçavdikin, davêjin girtigehan û qetildikin. Hin rojname û kanalên televizyona digrin û qedexe dikin.

Hin jî rêvebirên gelek dewletan, wezîr, serokomar rexneyan qebûl nakin. Ji bilî van hin tehdîtên taybet jî çêdibin, wek hin kesayetên wek karsaz û sîyasetmedar. Yanê ev şexsiyet dikarin ji bo hin hesabên xwe erişî çapemeniyê bikin. Tehdîtek mezin jî ji komên hêzên çekdar tê. Bi taybetî ev yek li Îraqê pêk tê. Em dinêrin ku komên çekdar, komên terorîst an jî komên serbixwe dikarin erişî rojnamevanan dikin. Yanê an dîrek dikûjin an jî direvinin. Û van kesa di tehdîdan de bikartinin. Hin kes jî dîrek erişî medyayê dikin.

***Di derbarê Tirkiyê de çi xebatên we hene?***

Di salên 1990'an de ji bo rojnamevanê kuştî Metin Göktepe de me xebatek çêkir. Bi malbatê re em tevlî dadgehê dibûn. Dema rojamevanek hate kuştin ku pêwîstî pê hebe em li ser vê yekê lêgerîn û lêkolîn dikin. Li ser wan xebatên xwe em anketan jî çêdikin. Dema ku me ankêt çênekir jî, ankêtên ku dewletê çêkirine em dişopînin. Hiqûq an jî polîs erka xwe bicih tînê, nayne em dişopînin. Lê ev yek jî zor e, ji ber ku em ne polîs, ne hakim ne jî dozger in. Em biryar nadin. Lê me dikarin bişopînin ku ka polîs erka xwe baş bicih tîne an na?

***Demekî Dewleta Tirk we dabû dadgehê ji ber çalakiyên we li dijî binpêkirina mafên rojnamevanan li Tirkiyeyê?***

Dewleta Tirkiyê texmîn kiriye ku me bi vê çalakiya xwe li wan heqaret kiriye. Ev çalakiya hun bahsdikin demekî berê li istasyona Parisê Saint-Lazare bû. Nexşeyeke dinyayê me li erdê çêkiribû û me fotografên kesên dijminên azadiya çapameniyênin me zeliqandibû. Yanê dewletên ku erişî azadiya çapameniyê dikin, an jî li pêşiya vî mafî astengiya derdixin. Wê demê me fotografê serfermandarê demê ya artêşa tirk jî di vê nexşeyê de bicihkiribû. Û ev yek li xweşa hin kesan neçûbû. Hin tirkan erişî vê çalakiya me kiribûn, erişî nexşeyê kiribûn. Erişkar alî polîsan ve hatibûn girtin. Lê me di derheqê van kesan de doz venekir. Lê demek şunda me bihîst ku wan di derheqê serokê rêxistina me Robert Ménara de doz vekirin.

***Hun rewşa niha ya Tirkiyeyê çawa dinirxînin?***

Li Tirkiyeyê hin jî teradutên me hene ku rewşa xwe ya berê biparêze. Niha li Tirkiyeyê rojnamevanên girtî hene. Gelek rojnamevanên navdar, redaktor û nivîskarên rojnameyan hin jî tênê mahkemekirin. Orhan Pamuk ku xelata Nobelê girtiye kesek ji van bû ku dihat darezandin. Yanê em rewşa Tirkiyeyê li gor hiqûqa wan dinirxînin. Lê hiqûqa Tirkiyeyê jî li gor şertên YE'yê nîne. Ger ku Tirkiye dixwaze bikeve YE'yê divê ev aliyê xwe bigorîne. Zagonên wan yên cezayê ne nûjen e. Li Tirkiyeyê zagonek bi navê "heqareta dewletê" heye ku bisaya wê rojnamevanan diavêjin zindanê. Heta rêvebirekî dewletê jî rexne kiribe ew madde tê şixulandin. Li dewletek ku dixwaze bikeve YE'yê ev nabe. Rewş guhariye, pêşketin heye, lê gelek tiştên ku lazim e werin kirin jî hin mane.

***Dewleta tirk li aliyekî kanalên kurdî vedike, li aliyê din dixwaze Roj TV bigre...?***

Belê li ser Roj Tv hin jî zext hene. Em hêvîdar in ku wê ev kanal neyê sansorkirin. Li gor me kanalek ku li Danîmarkayê weşanê dike û ji be ku dewleta tirk dixwaze ew were girtin, tiştek ne normal e. Li gor me pirsgirêka kurd li Tirkiyeyê mijareke hasas e. Tirkiye sozê ku çend sal berê dabû me gerek bicih bîne. Gerek zimanê kurdî wek zimanek fermî bê pejirandin. Li Tirkiyê gerek medya kurdan yên realîst û serbixwê hebin. Li gor me weşana kanalek li sirgûnê li Danîmarka tiştek ecêb e. Gerek Roj TV bikaribe li Tirkiyeyê weşanê ne ku bê girtin. Ev helwest li dewletên anti-demokratîk pêk tên. Wek dewletên Bîrmanya û Çîn. Divê Tirkiye dest ji van tiştan berde.

# Roja Libnanê şeva Kurdistanê germ kir



(Wêne: Rûdaw)

*Necwa Kerem: Min pêşbînî nedikir ku Hewlêr bajarekî ewqas xweş û aram be*

**ARÎ OSMAN**

**Hewlêr** – Piştî bendewariyeke dirêj, şeva 3'ê Kanûnê hunermenda libnanî ya naskirî Necwa Kerem çû Kurdistanê û li salona High City ya bajarê Hewlêrê û şeva din jî li salona Oscar li bajarê Silêmaniyê du ahengên coşdar saz kirin. Necwa Kerem nikaribû hestên xwe beramber hezkiriyên xwe veşêre û got: "Zêde serbilind im bi hezkiriyên xwe li Kurdistanê."

Necwa Kerem li gel grûbeki semakar û 20 muzîkvanan ji aliyê şirketa Babylon bo Kurdistanê hatibû vexwendin û piştî ku derket ser sahnê wiha got: "Zêde kêfxweş im ku li Hewlêrê me, min pêşbînî nedikir ku Hewlêr ewqasî xweş û aram be." Necwa herwiha daxwaz ji hunermendên ereb kir ku serdana Kurdistanê bikin û konseran saz bikin.

Tevlî giraniya nirxê bilêtan ku di navbera 170-500 Dolaran de bû, hezkiriyên Necwa guh nedan giraniya nirxên bilêtan û tevî ahengê bûn. Xelk ji cihên cuda yên Îraq û Kurdistanê hatibûn konsera Hewlêrê.

Piştî hatina hunermendên faris bo sazkirina konseran li Kurdistanê, Necwa Kerem yekem stranbêja navdar a ereb e ku tê Herêma Kurdistanê. Endamê şirketa Babylon, Mario Ebi Nexol, berê bo Rûdawê daxuyandibû ku hatina Necwa Kerem destpêkeke bo anîna gelek hunermendên din: "Em dixwazin peywendiyeke hunerî ya bihêz di navbera Libnan û Kurdistanê de dirust bikin."

Li pêşiya dergehê salona High City gelek ciwan bi hêta derbasbûna nav salonê rawestiya bûn, lê ji ber ku bilêta konserê giran bû, nikaribûn derbasî hundir bibin û çaverêya heman derfeta mina konsera Muin û Cemşîd dikirin ku piştî destpêkirina konserê jimareke zêde ya xelkê belaş û bê birîna bilêtan ketibûn hundir. Lê di konsera Necwa Kerem de ciwan li derve man.

# Jinên Îraqê dibin koleyên seksê



**Rûdaw (Melef Press)** - Hinek rêxistinên çavdêriya mafên mirovan û parêzerên jinên Îraqê eşkere kirin ku bi hezaran jinên Îraqî bûne qurbaniyên tundûtûjiya civakî û siyasî, bi sedemê firotina wan li bazarên koletiya sêksê ku li hundir û li derveyê Îraqê bi awayekî çalak tê meşandin. Çend nûnerên van rêxistinan tekez kirine ku karê bazirganî yê wan çeteyên tawanê niha germ e, nemaze bo bi qaçax şandina jin û keçan ku carina temenê wan ji 12 salan ne zêdetir e. Ev rêxistin erkê nehiştina vê diyardeyê û çareserkirina wê dixin stuyê Hikûmeta Îraqê, Amerîka û Brîtanya yê.

Ajansa Media Line News di raporekê ku rojnameya Havginton Street belavkiriye de eşkere kir ku zêdebûna salane ya rêjeya jinên Îraqî li bazara nehênî ya navnetewiya "koletiya seksê" de tên kirîn û firotin. Sedemê wê jî xirabiya rewşa aborî û ewlekarî ya Îraqê piştî sala 2003'an e.

Nûnerê Rêxistina Azadî ya Jinên Îraqê Hozan Mehmud dibêje ku pirsgirêk li derveyê welat e: "Proseya bazirganiyê bi van jinan ku bo derveyê welat tên şandin li wir destpê dike. Berê tiştekî wiha nebû, niha xetera berfirehtirbûna vê bazirganiyê jî heye û gelek jin û keçên Îraqê bo welatên derdorê wek Sûriyeyê û welatên Kendavê tên şandin."

Rêxistina Jinên Bexda jî radigihîne ku salane herî kêm 200 jinên Îraqî li "bazara koletiya seksê" tên firotin. Lê Rêxistina Human Rights Watch jimara jinên Îraqî yên li bazarê tên firotin bi hezaran texmîn dike.

Li gor Nadya Xelîfe ya pispora mafê jinan li Rojhilata Navîn û Bakurê Afrîqa li Rêxistina Human Rights Watch "Rewşa niha ji destpêka sala 2003'an xirabtir e. Gelek jinên Îraqê bûne jinebî, herwiha di rewşeke dijwar wek birçîtî, alîkarî nekirina wan ji aliyê kesûkarên wan û koçberiyê de dijîn û lewma bi neçarî û tenê bo ku bijîn berê xwe didin laşfiroşiyê. Rêyeke din li pêşiya van jinan nemaye û divê jêdereke darayî bo wan hebe, heta bikarin bijîn. Wek mînak li Sûriye û Libnanê malbatên Îraqî bê jêderê darayî ne û êdî hinek ji wan malbatan jin û keçên xwe neçar kirin ku laşfiroşiyê bikin."

Nûnera Rêxistina Azadiya Jinên Îraqê, Hozan Mehmud, dipirse: "Zêdeyî 4 milyon jinebiyên Îraqî hene… ki xerca wan dide? Ev yek xwekuştina civakî ye. Bi taybetî li welatekî ku tradîsyonan diparêze. Herwiha di vê rewşa kambax a Îraqê de jimareke zêde ya keçikan tên revandin û tên neçarkirin ku karê leşfiroşiyê bikin."

Bi baweriya Mehmûd Hikûmeta Îraqê û bijarteya siyasî bi awayekî "destê" wan di neçarkirina jinan bo laşfiroşiyê de heye: "Hinek kes di nav parlamen û hikûmetê de ne ku piştivaniya laşfiroşiya jinan dikin û qet nayên sezakirin jî. Herdem jin bacê didin, ji ber di civakeke wisa de û di atmosfereke siyasî ya wiha de jin xeleka herî lawaz e."

Li gor Hozan Mehmud eşkerekirin û şermezarkirin têr nake û daxwaz dike ku têgehiştineke berfirehtir pêwîst e bo çareserkirina rewşa jinên Îraqê ku dehan sal e li ser astê civakên Rojhilata Navîn di rewşên herî zehmet de derbasbûne.

# Jiyan li Norwêcê xweş e



**Köln** - Li Norwêcê jiyan ji her welatê din yê cîhanê xweştir diborê. Ev yek ji encama lêkolîneki nû ya Neteweyên Yekgirtî (NY) dixuyê. Li gor vê lêkolînê Norcêw li pêş welatên wekî Awistralya û Îslandayê di rêza yekê de serkêşiya welatên herî pêşketî yên cîhanê dike. Almanya di noqteya qalîteya jiyanê de di rêza 22'an de ye û bi vê yekê li paş welatên wekî Îrlanda, Fransa, Nemsa, Spanya û Îtalyayê cih digre. Ji welatên pêşketî Japon di rêza 10, DYA'yê di rêza 13 û Çîn jî di rêza 92'an de cih girt. Di rêzên dawî de welatên ku bi şerên navxweyî di rojevê de ne, wekî Siêra Lêonê, Afxanistan û Niger cih digrin. Wekî din Tirkiye di rêza 79, Îran di 88 û Sûriye jî di rêza 107'an de ne. Di Listeya ku 182 welat cih digrin, Îraq jî ji ber tunebûna agahiyan cih nagire. NY ji sala 1990'î û virve rewşa welatên cîhanê dide ber hev û li gor hatina diravî, xwendina niştecîhan û dirêjiya temenê hemwelatiyan vê lîsteyê amade dike.

# Sînorê Kurdistanê êdî bi kamera ye



**Silêmanî (Rûdaw)** - Îraq dixwaze bi danîna kamereyên video li ser sînorên xwe aramiya bajarên xwe biparêze û ev pilan Herêma Kurdistanê jî di nav xwe de digre.

Li gor nûçeyeke Ajansa Nûçeyan a Fransayê, Hikûmeta Îraqê zêdeyî 50 milyon Dolar bo vê projê dabîn dike û pirraniya wan kamereyan jî li ser sînorê di navbera Îraq û Sûriyeyê tên bicihkirin. Tê gotin ku Îraq sîstema çavdêriyê ji Amerîkayê dikire.

Berpirsê Hêzên Parastina Sînorên Parêzgeha Silêmaniyê, Mele Ehmed Deskereyî, bo Rûdawê daxuyand: "Ev proje pêşniyareke li ber dawîbûnê ye û biryare ji budceya giştî ya sala 2010'an pere ji bo wê bên terxan kirin." Ehmed Deskereyî got ku ev pîlan bi sedemê hevsînoriya berfireh li gel Îranê, Herêma Kurdistanê jî digre nav xwe.